# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ROJNAME YA HEFTEYÎ YA NÛÇEYÎ • BIHA 2.5 TL

HEJMAR 7 • 7 - 13 HAZÎRAN 2014 • WWW.BASNEWS.COM


**Siya Şevê:**
**Dîdara wêje û muzîkê**

➜ 16



# Tirk û kurd li asoya aştiyê!









Pêvajoya çareseriyâ bi nêzikbûna hilbijartinên serokkomariyê û mijara petrola Kurdistanê digihêje asteke nû. Erdoğan di rêya Çankayayê de dixweze ku prestîja xwe bi çareserkirina pirsgirêka kurd xurttir bike. Li aliyê din tevî ku Amerîka ne razî ye, di mijara petrolê de paş ve gav navêje, dixweze ku Tirkiye li Rojhilata Navîn bibe xwedî rolekî bi hêz.

Di vê çarçoveyê de li gor daxuyaniya Beşîr Atalay, Erdoğan biryara ku pêvajo bigihêje asta dûyem daye. Ocalan jî di hevdîtina dawîn ya li gel heyeta HDP'ê de got ku vegera PKK'yiyan jî di nav de, li ser mijarên girîng bi heyeta dewletê re li hev kirine û çav li rê ye ku di rojên pêş de di warê muzakere û pêvajoyê de gavên ber bi çav bên avêtin.

➜ 4-5

## Jana sirgûnê




➜ 14-15

## Cîhê razanê jî nema



Ji koçberên ku ji Rojava li ber şer xwe spartine Stenbolê malbatek ku ji 7 kesan pêk tê, li vir kuçe bi kuçe li cîhekî digerin...Tenê ji bo razanê

➜ 10

## Kayê qamçî...



➜ 6-7

# Kurdistana ku roj lê hiltê

**Rojhilatê Kurdistanê li gor pergala rêvebiriya dewleta Îranê wek pênc eyaletan ji hev hatiye veqetandin. Eyaleta Kurdistanê ku peytext Sîne ye, di warê fermî de ji bajarên Seqiz, Bane, Merîwan, Qurwe, Bîcar, Kamyaran û Dîwandere pêk tê. Bajar û heremên din yê Rojhiatê Kurdistanê jî wek eyaletên Kîrmaşah, Îlam û Loristan ji hev hatine veqetandin. Bi vî awayî rejima Tahranê xak û şêniyê Kurdistanê ji hev dûr xistiye. Rûberê Rojhilatê Kurdistanê ji bilî herêma Loristanê nezîkî 175 hezar kîlometreqere ye. Loristan bi navê Lornişîn û Leknişîn wek dû heremên etnîkî ji hev vediqete. Lek li Herêma Pêşkû cîhwar in û xwe wek perçeyekî netewa kurd dizanin. Lorên herêma Piştkû jî xwe wek netewekî cuda dihesibînin. Ji aliyê din ve Feyliyên Başûrê Kurdistanê ku ew jî Lor in, xwe perçeyekî ji netewa kurd û zimanê xwe jî wek zaravayekî zimanê kurdî dihesibînin.**



**WELAT BAZ**

Rojhilatê Kurdistanê welatê çiyaya ye. Çiyayên vê deverê girên rêzeçiyayê Zagorsan e. Zagros ji herema Serhedê destpêdikin û heta herema Loristanê 1000 kîlometre dirêj dibin. Ev rêzeçiya di nav xaka Kurdistanê de derbas dibe û sînorên her sê perçeyan ji hev diqetîne.
Çiyayê herî bilind li herêma Mako, Çiyayê Sarîdaş e û 3608 metre bilind e. Çiyayên din jî yên ku bilindahiyên wan li seriya 3 hezar metreyî ne ev in: Çiyayê Çilîkan, li herêma Biradost, Çiyayê Reş, li herêma Şino, Çiyayê Çilçeme, li herêma Sine, Çiyayê Şaho, li herêma Hewraman, Çiyayê Dalaxanî, li herêma Kîrmaşah, Çiyayê Peraw, li herêma Bêston, Çiyayê Mezin û li herêma Îlamê jî Çiyayê Kebîrkûh.

**Deşt û rûbarên zêrîn**
Li sirûşta rengîn a Rojhilatê Kurdistanê gelek deştên ku ji alî rûbarên avxweş ve tên avdan jî hene. Deştên giring ku têde çandinî tên kirin û fêkiyên cûrbicûr tên çandin evin: Deşta Soma, Deşta Ûrmiyê, Deşta Bêlewar, Deşta Mêrgewer, Deşta Şarwêran, Deşta Hûbeto, Deşta Dêgûlan, Deşta Merîwan, Deşta Kamyaran, Deşta Elwend, Deşta Sehne, Deşta Kirmaşah, Mayîdeşt, Deşta Îslamawa, Deşta Kerend, Deşta Pataq Xosrewî û Deşta Îlam an jî Eywandeşt.
Li Rojhilatê Kurdistanê gelek rûbar û çem jî diherikin. Çemê Zêrîn û Çemê Sîmîn piştî ku di nav gelek gund û hereman derbasdibin dirijin nav ava Gola Ûrmiyê. Çemê Kelwê, Çemê Aras, Çeme Qizilozûn, Çemê Sîrwan, Çemê Elwend, Çemê Qeresû û Çemê Gamasawîş jî ji çemên din yên Rojhilatê Kurdistanê ne. Gelek ji van rûbaran piştî rêwîngiyên dirêj derbasî Başûrê Kurdistanê dibin.
Li Rojhilatê Kurdistanê gelek seyrangeh û deverên geşt û bêhndanê jî hene. Li Ûrmiyê Gundê Bendê, li Merîwan Zirêwar, Melaqubî û Îmam, li Hewraman Hewş û Baranî, li Bane Silêmanbeg, li Sine Awiyer, li Kirmaşah Taqwestan, li Rêjaw Serawrêjaw û seyrangehên din; Rîwanser, Pawe û Newsûd...

**Bajarê avê: Urmiye**
Li Rojhilatê Kurdistanê yek ji bajarên mezin Ûrmiyê ye. Urmiya kevnarê ji şaristaniya Medya vir ve welatê kurdan bûye û di gelek şûnewarên dîrokî de navê wê hatiye kolan.
Ji gelen heremê Suryanî bajêr wek; Urmiya, Pers; Urûmî an jî Urmîye, ereb jî; Urumiye binavdikin.
Li gor lêkolînvanan navê Ûrmiyê ji dû peyvên Aramî pêk tê: Ur tê wateya ”bajar, şar” û miyah jî tê wateya ”avê” ye. Yanî ‘’Bajarê Avê”.
Dîsa hin lêkolîner navê Ûrmiyê wek peyveke Kildanî şîrove dikin û li gor wan Ûrmiye tê wateya; ”bajarê nêzî derya yê”.
Li gor hin lêkolîneran jî navê Urmiye eslê xwe ji peyva "xuromeh" digre ku ev peyv di Kurdî de tê wateya; roj û mêh.
Di hin jêderên Asûrîyan de behsa




Ûrmiye


Çiyayê Zaxros

Kela Armayît tê kirin. Li gor hin lêkolîneran ev kele li cîhê bajarê Urmiya îroîn hatiye çêkirin. Li aliyê din Kela Zîbiya yanê Zêwe ya îro jî, peytexta Dewleta Mannaiyan bûye ku li herêma Mirgewer e û 45km li rojavayê Ûrmiyê dikeve.

**Warê Zerdeşt**

Li gor Awesta ya pîroz navê kevn yê bajarê Ûrmiyê; Çîçêst an jî Çîz bûye. Çîçêst an jî Çîz tê wateya "spî an jî beraq." Dîsa li gor şîroveyên li ser Awesta, pêxemberê Ola Bahdîn Zerdeşt li Ûrmiyê hatiye jiyanê. Li gor dîrokzanên wek İbnî Huqîl, Sir Aurel Stein, Hemdullah Mosfotî û Yaqût Hemewî jî cihê ji dayikbûna Zerdeşt bajarê Ûrmiyê ye. Urmiye di dema Part û Sasanîyan de ziyartgeha Zerdeştiyan jî bûye.
Gora dayika Zerdeşt, Exdûbe jî li rojavayê Ûrmiyê li herêma Tirgewerê li Gundê Enbê ye.
Urmiye ji bo bawermendên İsewî jî nawendeke girîng e. Li gor İsewiyan qebra dû hawariyên Hazretî Îsa, li Dêra Dayik Meryemê ya bajêr e. Ji ber van sedeman bajarê Ûrmiyê ji mêj ve wek navendeke olî û zanistî hatiye naskirin. Li gor bermayî û rêçên dîrokî li herema Ûrmiyê 2 hezar sal berî zayînê şaristanî hebûye. Herem ji destpêka koçberiya êlên Arî, bûye warê Madan.
Lêkolînên ku di sala 1888an de li heremê hatine kirin nîşan dide ku Manayî û Babîliyan jî 2 hezar sal berî zayinê morên xwe li Ûrmiyê xistine.
Li gor Kurdolog Mînorskî, Urmiye leqayî êrîş û dagirên Asûrîyan jî hatiye. Herwiha bandora Urartoyan jî li heremê hatiye tespîtkirin. Taybetiyên mîmarî yên berhemên Urartoyan ku li herêma Mirgewer û Kela Simaîl Xanê Mezin û li herama Wanê hatine miqayesekirin wek hevin. Dîsa bermahiyên ku li Şino, Girê Hesenlo û gorên li Sildoz hatine keşifkirin, dîroka bajarê Ûrmiyê heta 4000 sal berî zayînê dibe.
Herema Ûrmiyê heta dagira erebên Musliman di nav xaka Dewleta Sasanî de bû. Piştî desthilatiya ereban bajêr leqayê êrişên Xarzemşahiyan û Mongolan bû. Herwiha li heremê mîrnîşînên kurd yên wek Riwadiyan, Daysaman jî hatine damezrandin.
Ev bajarê kevnare gelek mirovên navdar jî gihandiye. Hisameddîn Hesen Çelebî yê kurd ku yek ji şagirtên navdar yên Mewlana Celaleddînê Romî bû ji Ûrmiyê ye. Dîsa Hesret, Şêx Ebubekir Zînharanî û Simaîl Xanê Şikak û gelek kesên din ji navdarên Ûrmiyê ne.

**Kurdistan bi navê Azarbaycan hat dabeşkirin**

Ji bajarên mezin yê Rojhilatê Kurdistanê Urmiye û navçeyên wê jî di nav sînorên fermî yê Eyaleta Azerbaycana Rojava de cîh digrin. Urmiye ku yek ji bajarê gewretirîn yê Eyaleta Azarbaycana Rojava ye xwedî şêniyeke nêzî 700 hezarî ye.
Şêniya parêzgerê nêzî 2 milyon û nîv e. Ji vê şêniyê milyon û 300 hezar kes li bajaran û yên mayî jî li gundan dijî. 13 qezayên parêzger yanê wîleyeta Ûrmiyê hene: Bokan, Pîranşar, Tîkab, Xoy, Serdeşt, Selmas, Şahîndij, Mako, Mahabad, Mîyandûab, Nexede, Şino û Çaldiran.
Piraniya rûniştvanên wîlayeta Ûrmiyê kurd in. Ji bilî kurdan; Azerî, Ermenî, Asûrî û Kildanî jî li herêmê dijîn.


Herêma Hewraman


Şahiyek ji Ûrmiyê

**Hêlîna welatparêziyê**

Helbet Urmiye di dîroka Kurdistana nûjen de bi serhildanên Şêx Ubeydullah û Simkoyê Şikakan tê naskirin. Li aliyê din di salên dawîn de erdnîgara Ûrmiyê wek hêlina welatparêziya kurd nav de ye. Ji salên 1960an virve têkoşerên kurd li çiya, deşt û bajarên Ûrmiyê kêm nebûne.
Ji bajêr û derûdorê bi hezaran welatparêz gerek di nav hêzên pêşmerge de, gerek di nav refên gerîlla de jiyana xwe wenda kirine. Dîsa serekê tevgera nûjen a salên dawîn Evdirahman Qasemlo ku şehîdekî navdar ê diyariya bajarê Ûrmiyê ya ji bo Kurdistanê ye.

**Nakokiya kurd û azeriyan**

Dewleta Îranê ji bo lewazkirina zimanê kurdî û hîssên netewî, sûk û aboriya bajêr bizanebûn xistiye destê Azeriyan. Bi vî awayî di nav kurd û kêmnetewên din yên heremê de serdestiya zimanê Azerî û Farsî rastkiriye. Ev siyaseta dewletê bi taybetî piştî têkçûna Serhildana Simko dijwar bû. Di encama vê siyasetê de di hemû waran de ferqeke mezin ket navbera herêmên kurdnişîn û azerînişîn. Ev cudahî li bajêr hîn jî tê dîtin. Ev siyaseta ku heta îro jî berdewam dike, piştî salên 1979an bandora xwe wendakir. Di 25 salên dawî de li nawenda bajarê Ûrmiyê şêniya rûniştvanên kurd zêdetir bûye.
Rûberê xaka Ûrmiyê bi giştî nêzî 45 hezar km qare ye. Dirêjiya xaka bajêr 70 km û firehî jî 30 km e. Bajêr li kêleka Derya Şîn a Ûrmiyê hatiye avakirin. Ûrmiye ji deryayê 1267 mêtre bilind e.
Erdnîgara Ûrmiyê ji bo kiştûkal û zairêtê gelekî kêrhatiye û bi xêr û ber e. Li deşt û geliyên dora Ûrmiyê çandinî tê kirin û daristanên fêkiyan hene. Tirî, zebeş, qeysî, sêv, hirmî û fêkiyên din yên bajêr ne tenê di bazara Îranê de, herwiha li hemû sûkên rojhilata navîn navdarin. Li xaka bajêr tutûn, silkên qendê û gulberoj jî tên çandin. 30 cûrên tirî li rezên Ûrmiyê tên çandin û şerab û mêwîjên van rezan li derveyê Îranê tên firotin.
Li derdora Ûrmiyê; çem û rûbarên wek; Baraniz, Roze, Nazlo û Çemê Bajar an jî Şareçay derbasdibin. Van çeman ji rêzeçiyayên Zagrosan dizên û tevlî Gola Ûrmiyê dibin.
Helbet dema behsa Ûrmiyê tê kirin gola ku bi navê bajêr tê naskirin tê bîra mirov. Gol li rojhilatê bajêr cîh digre û di nav Azarbaycan û Kurdistanê de sinor e. Dirêjiya golê nêzî 135 km ye û firehiya wê jî di navbera 15 û 50 km duguhure. Gola Ûrmiyê ji deryayê 1267 m bilind e. Rûberê golê bi giştî 6000 kq ye. Û kurahiya wê di navbera 6 û 16 metreyan de ye. Ava Gola Ûrmiyê bi xwe ye û nayê vexwarin.
Li herama Ûrmiyê gelek berhemên dîrokî û deverên arkeolojîk jî hene. Li nêzî bajarê Nexedê Girê Hesenlo, Mizgefta Ûrmiyê, Sê Gombed, Kela Dimdim, Çar Birc, Dêra Dayka Meryem, Mizgefta Serdar, Kela Yekderb, Kela Simaîlxan û Agirdanka Temer û Muzeya bajêr çend ji van deveran e.


Gola Ûrmiye

# Di pêvajoya çareseriyê de merheleya duyem


RAWÎN STÊRK

**Di pêvajoya çareseriya pirsgirêka kurd de li gor daxuyaniyên rayedarên dewletê û Ocalan êdî asta duyêm destpêdike û çav li rê ye ku gavên ber bi çav bên avêtin. Wek vegera PKK'yiyan, rewşa girtiyên nexweş û rakirina astengiyên li ber siyaseta demokratik tê rojevê.**

Muzakere û pêvajo ya çareseriya pirsgirêka kurd, piştî ku bi hinceta bûyerên li Lîce derketine, zarokên ku bi îddiaya ji alî PKK'ê ve hatî revandin û gotinên siyasetmedaran ên li qadên hilbijartinan xitimî, bi daxuyaniyên ku ji aliyê herdu hêlan ve di rojan dawî de hatin ragihandin careke din ket rojeva Tirkiye û Kurdistanê. Di encama daxuyaniyên rayedarên dewletê û gotinên Ocalan de derket holê ku pêvajo êdî gihêştiye asta duyem û di rojên pêş de dê gavên girîng û ber bi çav bên avêtin.



Bi taybetî piştî çalakiyên ku li hemberî avakirina qereqol û kelehqolên ku li heremê tên avakirin li Lîcê dest pê kir û li gelek deverên Kurdistanê didomin û çalakiya malbatên ku bi hinceta ku zarokên wan tev li PKK'ê bûne dest pê kir, nêzikahiya ku êdî pêvajo xitimî ye û têk çû ye gihand asta herî bilind. Lê belê tam di van rojan de ji alî rayederên dewletê Serokê PKK'ê Ocalan ve daxuyaniyên nû hatin kirin. Cara yekem di navbera gotinên Ocalan û yên berpirsên dewletê de wekheviyek xuya dibe û li gor agahiyan di rojên pêş de çav li rê ye ku pêş ve çûn û gavên çareseriyê yên ber bi çav bêne avêtin.

Baweriya ku pêvajoya çareseriyê û muzakere yên li Îmrali'yê dimeşin xitimî ye, bilêvkirinên siyasetmedaran yên li qadên hilbijartinan, zimanê wan î hişk û cûdakêr di nava civakê de bi cî bibû beriya demekê ver ve. Tevî vê yekê demeke dirêj e ku li Kurdistanê avakirina qereqol û kelehqolan didome, sewqiyata teçîzata şer tê kirin û qadroyên nû ji bo cerdewaniyê tên diyar kirin. Di encama van pêkanînan de raya giştî di warê çareseriyê de bê hevî ma û nêzikahiya ku pêvajo xitimî ye bi firehî niştecî bû. Heta, talûkeya ku pêvçûn careke din dest pê bikin jî dihatê niqaşkirin.

Herî dawî komên çalakvanan ku bi hinceta protestokirina avakirina qereqolan li Lîce gihêştin hev û riya Çewlik û Amedê ji trafîkê re girtin. Bi vê hincetê tîmên taybet sevqî heremê hatin kirin û çalakvan jî her roj qelebelixtir bû û piştgiriya gel a li gel çalakvanan jî bêhtir bû û demek dirêj e ku pêvçûn diqiwimin. Çalakvanan rê bi dest xistin, li gelek cîhan kort li rê xistin, pir xilandin û bi kepçeyan rê xira kirin. Pê re çalakî lig elek bajarên heremê belav bû, li Kanîreş a Çewlik û li Gimgim a bi ser Mûşê ve çalakiyekê dest pê kir, rê ya Mûş û Erziromê jî ket kontrola çalakvanan. Dû re li Çiyayê Meskan ê li Colemêrgê jî çalakiyek dan dest pê kirin. Bi minasebeta piştgiriyê wekî din li Wan, Êlih, Mêrdîn, Şirnex û gelek navçeyan jî çalakî dest pê bûn. Bi van çalakiyan têkiliya di navbera herdû aliyan de jî bêhtir ragişî û di vê navberê de li Amedê malbatên ku bi îddiaya ku zarokên van ji alî PKK'ê ve hatine revandin li ber şaredariyê çalakî dan dest pê kirin, raya giştî ji nişke ve li ser van mijaran xiliqî.



## Ji serokwezîr hişyariya planên B û C

Piştî ku çalakiya malbatan ji alî çapemeniyê ve bi berfirehî hat rojevê, Hevserokê BDP'ê Selahattin Demirtaş bi wan re li hev rûnişt û ket nava hewildaneke ku rewş bê ser bingehek asayî, lê belê Serokwezîr Erdoğan di axaftina koma xwe ya parlementoyê de bi gotinên, "Hun dê biçin wan zarokan bînin û bên, heke ku hun wan nêynin dê planên me yê B û C wê têkevin dewrê" gef li BDP û HDP'ê xwer û bu sedema ku tabloyê mezin veguhize tiştekî din. Piştî hevdîtina Demirtaş, malbatan dawî li çalakiya xwe anî û malbatekê ji Demirtaş lêborîn xwest û zarokek ji yên ku dihate îddiakirin ku çû ye çiyê, Alanya ya Antalya'yê hate dîtin û derket holê ku beşdarî çeteya dizî yê bûye.

## Asta nû 'Lijneya Şopandinê'

Tevî nîqaşên xitimîna pêvajoyê Cîgirê Serokwezîr yê Berpirsê Muzakereyan Beşir Atalay di daxuyaniyekê de, "Di pêvajoya çareseriyê de em gihêştin asta duyem" got û bal kişand ser rojên pêş ku çav li rê ye pêş ve çûnên nû derkevin holê. Li gor vê dê lijneyek şopandinê ji kesên ku ji alî raya giştî ve bi tevahî bê li hevkirin bê avakirin û herwiha ew daxwaza Ocalan bû jî. Dû re bi rêk û pêkkirina ku endamên PKK yên li çiya vegerin dê bikeve rojevê. Di axaftinên Atalay de xuya ye ku gavên ku dê bên avêtin weke berê bi giranî nê êdî wê bi lez bên avêtin.

Atalay ê ku di axaftina xwe de xeletiya fikra di derbarê muzakereyên ku ji kanûna 2012'an vir ve dimeşin xitimiye anî zimên, destnîşankir ku civîna di vê mijarê de ya herî krîtîk di 19'ê gulanê de bi beşdariya Serokwezîr Erdoğan hatiye li darxistin û biryarên



balkêş hatine girtin da ku nexşerêyek nû bê amadekerin û gavên ber bi çav bêne avêtin.

Di axaftina Atalay de xalek din jî girtina tedbîrên ji bo nerazîbûna derdorên li hemberî çareseriyê ye ku dibe ku ew pêvajoyê sabote bikin. Ji bo asta duyem vê carê dem jî hate diyarkirin û çav lir ê ye ku asta ku ji çar qedemeyên cûda pêk tê di 18 mehan de bi dawî bibe. Bêşek ji asta duyem a girîng jî lijneya şopandinê ye ku dişibe heyeta aqilmendan lê ji kêmtir kes dê tê de cih bigirin.

## Vegera PKK'yî yan

Di çarçoveya amadekariyên

derbasbûna asta dûyem de diyar e ku ji bo vegerîna endamên PKK'ê jî wê gavek girîng bê avêtin. Ji bo ku veger a PKK'yî yên ku di înterpolê de navê wan cî nagirin bi lez pêk bê, dê hin xebat bên kirin. Daxwaza Ocalan a ku rojnamevan û berpirsîn rêxistinên sivîl biçin giravê jî dê di rojên pêş de bê rojevê. Li gor Atalay her gav a ku bê avêtin yek bi yek kite bi kite di civînê de hate nîqaşkirin û di asta duyem de biryara dawî wê serokwezîr bigire.

Di vê navberê de heyeta HDP'ê ku ji Sirri Sureyya Onder, İdris Baluken û Pervîn Bulan pêk te jî di yekê hezîranê de çûn giravê û bi Ocalan re hevdîtinek kirin. Li gor agahiyên ku wan dane jî derdikeve holê ku Ocalan jî behsa asta duyem kiriye û gotinên wî û yên Atalay hema hema digêjin hev.


Ocalan li gel heyeta HDP'ê ye

**Ocalan: Wê gav bi beramberi bên avêtin**

Li gor heyeta HDP'ê ku pê re axivî Ocalan wiha gotiye, "Rastiya herî girîng asta nû ku pêvajo gihêştiyê ye. Ji bo dest pêkirinek nû hêvî he ye û divê ev hêvî bê qewimandin. Li ber me, nexşeyek ku pêvajo di çarçoveyek zagonî de bidome, astengiyên li ber siyaseta demokratik bên rakirin, girtiyên nexweş bên berdan, Qanûna Tekoşîna bi Terorê re biguhire û zorekên girtî bên berdan he ye. Ji nêzikahiyên ku pêvajoyê provoke bikin divê herkes dûr bisekine. Heke ku li heremê bûyerên bi vê rengî biqewimin, talûkeya ku dijberên pêvajoyê vê bi kar bînin he ye. Divê herdû hêl ji bo vê şiyarbin. Divê gelê Tirkiye bizanibe ku temînata ku welat nayê parçekirin tenê kurd in. Divê gelê tirk jî li dora aştiya me ya mezin bibe xeleq û rê nede derdorên ku bi gotina parçebûnê siyasete dimeşînin. Di nava 3 hefteyan de wê heyetên siyasê dê bên cem hev. Pêvajo êdî di destê bûrokratan de derket û ji aliyê heyetên siyasî ve tê nîqaşkirin û zelaliyek di vê qonaxê de derketiye holê."

Dîsa li gor daxûyaniya heyeta HDP'ê diyar e ku cara yekem di hevdîtina Ocalan û heyeta dewletê nexşerêyek hatiye rojevê û gavên ku bil ez bên avêtin hatine rêzkirin. Her wekî din di rojên pêş de navên wek Leyla Zana, Sebahat Tuncel û Ertuğrul Kürkçü jî dê tev li heyeta HDP ya ku diçe İmrali'yê bibin

Li gor agahiyên ku hatine bi dest xistin Ocalan di derbarê zarokên ku li çiya ne jî hin tişt anîne rojevê û xwestiye ku ew zarok ji deverên şer dûr bêne xistin, çek nedin wan û yên ku dixwazin bi malbatên wan re bikaribin hevdîtinê pêk bînin û her wekî din yên nexwezin ku li çiyê bimînin divê destur bê dayîn ku malbat wan bînin mal.

**Navenda niqaşkirina pêvajoyê Amed e**

Di axaftinên ku ew nêzikahiyên herdû aliyan bi vî rengî cih digirin de gavên ku dê bên avêtin di vê çarçoveyê de dikeve rojeva raya giştî û gavek balkêş jî di vê navberê de li Amedê tê avêtin. Li gor vê di 6'ê mehê de li Amedê dê komxebatek bê organîzekirin û mijar li wê derê jî dê li ser masê bê raxistin. Komxebata ku wê bi beşdariya Beşîr Atalay, Wezîrê Karê Hundir Efkan Ala, Yalçın Akdoğan li ser navê AKP'ê beşdar bin bê organîzekirin û her wekî din jî li ser navê Kongreya Civaka Demokrat (KCD) Sekreterê Giştî Seydi Firat, li ser navê Meclîsa Aştiyê ya Tirkiye Hakan Tahmaz, nivîskarê Rojnameya Özgür Gündemê Gencay Gürsoy, Serokê Şaxa Mazlûmder a Amedê Abdurrahim Ay, Prof. Mithat Sancar, Doç. Dr. Vahap Coşkun, Doç. Dr. Hüseyin Yayman, Parlementerê berê yê AKP Abdurrahman Kurt jê wê di komxebatê de nêrînên xwe pêşkêşkin.

Komxebata bi navê "Mifte ya Tirkiye ya nû ku vedibe: Pêvajoya Çareseriyê" bi kordînasyona Cîgirê Serokê Ak Partî yê yê Lêkolîn û Gêşkirinê Ekrem Erdem ve tê organîzekirin de gelek rojnamevan, civaknas û akademîsyen jî wê beşdarbin û di derbarê duyem asta pêvajoyê de dê niqaş bên kirin. Di komxebatê de nexşerê ya ku nû ketiye rojevê wê bê zelalkirin û di dawiyê de wê raporek bê amadekerin û pêşkêşî Serokwezîr Erdoğan bê kirin.

**Çi qewimî ku pêvajo bi lez hat vê astê?**

Herwiha pirsa, 'çi qewimî ku tevî ku bawerî bi hemû rê û rêbazên ku heya niha hatine cerabindin, gotinên di vê çarçoveyê nemaye, tu gavên ber bi çav nehatine avêtin lê niha rewş gihaye asteke din?" Di bihgeha vê yekê de hesabên Erdoğan ên ji bo Çankaya'yê û hesabên li ser petrola Kurdistanê hene.

Heya niha çend cara Ocalan hişyariya ku pêvajo bi dawî bibe û pêvçûn dest pê bikin dikir, hişkahiya gotinên Erdoğan hê didome, lê tevî vê hin daxwazên ku demek dirêj e ji alî Ocalan ve tên kirin niha diyare ku bi cî bên. Heta ji bo duyem asta pêvajoyê 18 dem jî hatiye diyarkirin da ku gavên ber bi çav bên avêtin. Daxwazên Ocalan yên weke lijneya şopandinê, ji bo pêvajoyê çarçoveya qanûnî diyar e ku hatine qebûlkirin. Helbet di vir de talûkeya ku pêvajo bi lez û bez bi encam bibe heye û li aliyê din jî hesabên Erdoğan ku di warê siyaseta navneteweyî de û li Rojhilata Navîn prestîja xwe bigihîne cihekî saxlem. Tê gotin ku Erdoğan ji sînorê ku Amerika ji bo planên xwe yên Rojhilata Navîn ji wî re veqetandiye bihoriye û bi taybetî di mijarên wek Sûriye û Îranê de serê Amerika diêşîne.

Li vir tişta balkêş ji du bêşan pêk tê. Ya yekem: Erdoğan di rê ya serokkomariyê de neçare ku prestîja xwe ya ku hêjiyaye nû bike. Ji bo vê jî bi ji çareserkirina pirsgirêka kurd bêhtir qozek di destê wî de nîn e.ya duyem: Divê ji bo ku li Rojhilata Navîn bibe aktorek bi hêz, Tirkiye neçar e ku bi kurdan re tifaqekê çêbike. Tevî ku Amerika ne razî ye, Tirkiye petrola Kurdistanê digehinê piyaseya cîhanê. Bi vê jî şirikiyê li serbixwebûna Kurdistanê re dike. Weke tê zanîn di warê rezervên petrol û gazê de Kurdistan xwedî kadînek mezin e. Tirkiye bi rêvekirina li petrola Kurdistanê re li aliyekî Tirkiye dizivirîne qorîdora enerjîyê û li aliyê din jî Ewropa li neçarbûna wan a ji Rûsyayê difilitîne û bi vê rê di qada dîplomasî û têkiliyên navneteweyî de bi hêz dibe û polîtîkayên Amerîka û İsrail dixe talûkeyê.

Her wiha bi dest xistina van herdû qozan Tirkiye digihêje hêza Rûsyayê ya li Rojhilata Navîn. Di vê riyê de du aktor hene ku Erdoğan neçar e ku bi wan re li hev bike. Ocalan û Barzanî. Ji bo tamîrkirina prestîja xwe ya ku li hundir têk çûye divê bi Ocalan re li hev bike û ji bo ku bi riya petrola Kurdistanê bibe aktorek cîhanê jî divê bi Barzanî re têkiliyên xwe bigihîne asteke bilind. Di bin pêşveçûn û gav avêtinên di çarçoveya pêvajoyê de va ye ew rastî radizên.


Beşir Atalay

### Pîran de tayê edetê kırdan

# Roja zîyare, penderite, kayê qamçî

**Şarê mintiqa bawer kenê ke nameyê "Pîran", "Pîrejman" û "Pîrxakîyan" Pîr Mensur, Pîr Mûsa û Pîr Bedirî ra yeno. Goreyo ke rîpelê 144. yê cildê diyin yê Şerefnameyî de behs beno, Pîr Mensur lajê Seyîd Huseyn el-A'recî yo. Ebdulah Varlı kitabê xo Dîroka Dûgelên Kurdan de nameyê pîyê Pîr Mansûrî sey Huseyîn el-Erec Kurdî el-Hekarî nuseno û vano no zat bi eslê xo kurd o, hetê Hekarya ra ameyo cayo ke nika Pîran tede awan bîyo de yew tekîye viraşta. Şerefname de zî behs beno ke Pîr Mensur hetê Hekarya ra ameyo Pîran de yew tekîye awan kerda**



ROŞAN LEZGÎN

Kurdistan de mintiqaya ke kirdî (zazayî) tede ciwîyenê ra vanê "Kirdane". Mintiqaya Kirdaneyî de "Pîran" cayêko muhîm o. Qezaya Dîyarbekirî Pîran hîna zaf bi herbê kurdan ke 1925 de vera dewleta tirkan de virazîya yeno şinasnayîş. M. Kemal gama ke seba ronayîşê dewletêka newîye gulana 1919î de Îstanbul ra yeno Anadolî, Sêwas û Erzirom de kongreyan virazeno, kurdan reyde têkilîya xo germ gêno. La badê ke bi peymana Lozanî dewleta Tirkîya garantî bena, heq û huqûqê kurdan înkar kenê. Naye ser o, seba ke kurdî heqanê xo bigîrê, serektîya mîralay Xalit Begî (1882-24.05.1925) de Komîteya Îstîqlala Kurdistanê-Azadî ronîyena. Tirkî senî ke naye ra xeberdar benê, Xalit Beg û mebusê Bidlîsî Yusiv Zîya Begî (1882-24.05.1925) payîzê 1924î de tepîşenê. Badê ke nê her di serekê kurdan tepîşîyenê, pêşengîya hereketî kewena milê Şêx Seîdî. Şêx Seîd (1865-29.06.1925) zimistanê 1925î de dewa xo Qolhîsar ra vejîyeno, seba ke şarî serewedartişî rê amade bikero, hîna zaf mintiqaya Kirdaneyî ra gêreno. Roja 13 sibate 1925 de yeno Pîran. O wext Pîran yew dewa Gêlî ya. Gêl zî Madenî ser o bîyo. Wexto ke Şêx Seîd yeno Dêrey, tayê kesê ke hetê dewlete ra derheqê înan de teqîbat esto, ê zî kewenê mîyanê qafileyê Şêx Seîdî. Gama ke grûbêk eskerê dewleta tirkan wazenê nê kesan tepîşî, naye ser o pêrodayîş vejîyeno û serewedaritiş bisuret welat ra vila beno. Bi no qayde tarîxê kurdan de "Pîran" cayêko taybetî gêno.

Heta nameyê "Pîran"î izafeyê Şêx Seîdî beno, êdî vanê "Şêx Seîdê Pîranî". Pîran bakurê Dîyarbekirî de yo, nika dewleta tirkan resmîyet de nameyê "Dicle" nayo pa. Hetê rojawanê Pîranî de Erxenî, hetê başûrî de Gêl, rojhelat de Hênî û hetê bakurê ey de zî mintiqaya Qerebegan esta. Sey heme mintiqayanê ke kirdî tede ciwîyenê erazîyê Pîranî zî hîna zaf koyin o. Şarê derûdorê Pîranî zafane bi weyekerdişê pes û dewarî îdareyê xo keno la zîraet zî esto. Nufusê xo nika pa dewan wa qasê 40 hezarî yo. Merkezê Pîranî de çar mehlayî estê. Şarê merkezê Pîranî heme kirdkî qisey keno. Dewleta tirkan qismêk dewê Pîranî şerê nê serranê peyênan de xirabe kerdê, qismêk zî binê awbendan de mendê. Nika dewanê Pîranî ra 35 hebî sey muxtarî hesibîyenê. Nînan ra 23 dewî kirdkî (zazakî), 8 dewî kirdaskî, 4 dewî zî kirdkî û kirdaskî pîya qisey kenê.

Şarê mintiqa bawer kenê ke nameyê "Pîran", "Pîrejman" û "Pîrxakîyan" Pîr Mensur, Pîr Mûsa û Pîr Bedirî ra yeno. Goreyo ke rîpelê 144. yê cildê diyin yê Şerefnameyî de behs beno, Pîr Mensur lajê Seyîd Huseyn el-A'recî yo. Ebdulah Varlı kitabê xo Dîroka Dûgelên Kurdan de nameyê pîyê Pîr Mansûrî sey Huseyîn el-Erec Kurdî el-Hekarî nuseno û vano no zat bi eslê xo kurd o, hetê Hekarya ra ameyo cayo ke nika Pîran tede awan bîyo de yew tekîye viraşta. Şerefname de zî behs beno ke Pîr Mensur hetê Hekarya ra ameyo Pîran de yew tekîye awan kerda. Goreyê melumatê ke Malmîsanijî dayî, na tekîya Pîran de nîya, Dêrey de ya. Eke Dêrey de nêbo zî nêzdîyê Gêlî de verê çemî de bi nameyê Tekya yew dewe estbîya ke nika binê awbendî de menda,



beno ke uca bo.

Badê ke Pîr Mensur şino rehmet (mîladî 1021), lajê ey Pîr Mûsa cayê pîyê xo gêno. Badê ke Pîr Mûsa şino rehmet (mîladî 1069), na rey lajê ey Pîr Bedir beno postnişîn. Pîr Bedir qîmê xo tena bi selahîyetê dînî nêano, Diza Gêlî gêno binê hukmê xo û mintiqa de hukimdarîya sîyasî zî keno.

### Roja zîyare

Gorê Pîr Mensurî nika mîyanê goristanê Dêrey de yo. Şarê mintiqaya Pîranî gorê Pîr mensurî sey zîyarete qebul kenê. Dêrey, qasê panc km. rojhelatê Pîranî de, bakurê Qelbînî de kîşta rayîrê Hênîyî de, başûrê Koyê Malmîsanî de yew deşta duzeke de ya. Dewleta tirkan nameyê "Dêrey" kerdo "Kocaalan". Eslê xo de zafaneyê şarê Dêrey Qelbîn ra bîyo, coka tayê çimeyan de, mesela, "Diyabekır Salnameleri 1801-1802, Cild 4, r 208" de nameyê Qelbîn û Dêrey sey "Qalbeyn" vîyareno. Eynî çime de behs beno ke gorê Pîr Mûsayî zî Purcema [Pirejman] de yo. Gorêk zî dewa Pîrxakîyan de esto la şarê mintiqa vano nameyê nê zatî Şêx Şerîf o ku tîya ra qasê heşt sey serî verê cû şîyo rehmet. No tarîx teqabulê wextê Pîr Bedirî keno.

Şêx Seîd gama ke yeno Pîran, şewêk Dêrey de maneno. Vanê, Şêx Seîd şîyo bano ke mezelê Pîr Mensurî tede yo de nimaj kerdo, dima uca rakewto ke belkî Pîr Mensur bêro hewnê ey û derheqê hereketî de yew rayîr bimojno. La Pîr Mensur nêameyo hewnê Şêx Seîdî. Coka vanê hema o wext ra Şêx Seîd derheqê herbê kurdan û tirkan de bêhêvî bîyo.

Badê ke Pîr Bedir Gêlî gêno binê hukmê xo, êdî hem dîyanet hem sîyasetê mintiqa îdare keno. Goreyo ke Nusret Aydin

kitabê xo "Diyarbekir ve Mirdasiler Tarihi (Avesta, 2011)" de nuseno Erxenî, Çêrmuge, Maden û hetanî Palî kewenê binê desthelatdarîya Gêlî û bi no qayde şeklê dewlete de yew îdare awan beno. Na mintiqa tarîx de sey "Mintiqaya Mirdasîyan" name bena.
Goreyê melumatê ke ma Dêrey ra fekê Cemal Evdilnasirê Mehemê Elî Temirî ra arêdayo, mîreyê ke îdareyê Gêlî ra girêdaye yê, her serre Dêrey de serê mezelê Pîr Mensurî de yenê pêser. A roje badê ke mezelê Pîr Mansurî zîyaret kenê û ruhê ey rê duayan wanenê, dima nişenê ro, derheqê meseleyanê îdarekerdişê mintiqaya Mirdasîyan ser o mişewre kenê. Dima ra zî şeklê şayî de werdê xo wenê.

**Penderıte**
Werdo ke a roje wenê "penderite" bîya. Mintiqayanê bînan yê Kirdaneyî de na germî ra vanê "mastewa." Mastewa yan zî penderite, hîna zaf mîyanê kirdan de virazîyena. Kerkut, belxul û birinc do de girênenê. Girêyayîşê doyî ra hetanî ke germîya penderite bipeyşo tim têwdanê ke do nêqesîyo. Badê ke germî peyşaye, dekenê sehenan, rûno teze qijilnenê û verdanê ser, servîs kenê, wenê.
Dêrey de cinîyanê ke penderite pewtêne vatênê, verê Roja Zîyare, mîyanê 24 saetan de çi qatixo ke heywananê ma ra sadir beno, ma nêwenê. Ma Roja Zîyare de pê nê qatixî penderite pewjenê û mêmanan rê, şarî rê îkram kenê. Çunke bi no qayde can, mal, keye û heywanê ma qeza û belayan ra, xirabî û afatan ra muhafeze benê. Bereket dekeweno mal û dewarê ma.
Dêrey ra Cemalî va, no edet zaf rewên o, beno ke zemanê Pîr Bedirî ra nat dewam keno. Badê ke begê girêdayeyê îdareyê Gêlî werdê xo wenê, na rey mîyanê eskeranê began de musabeqeyê cengî dest pêkenê ke hela eskerê kamcîn begîtîye weş perwerde bîyê, pêrodayîş de çiqas jêhatî yê.

**Kayê qamçî**
Nê musabeqeyan ra yewe zî "Qamçî" ya. Kayê "Qamçî" mîyanê di grûban de kay beno. Her di grûban ra di eskerî yan zî di palewanî goreyê qaydeyanê belîkerdeyan, ke vazdayîş înan ra yew o, binê îdareyê hakemêkê meydanî de û nezaretê heyetêkê hekeman de vejîyenê meydan û pê qamçîyan danê yewbînan ro. Vanê verê cû seba ke canê înan nêdejo êlegê qalindî xo ra dayêne la nika xortî xo mîyane ra cor viran kenê û kay kenê. Qamçîya ke pê kay kenê kefîye ra virazenê. Verê cû palewanan hewteyêk verê cû ra kefiyeya xo dekerdêne binê qumê hîtî ke baş bişidîyo. Dima vetêne, tadayne û kerdêne sey qamçî. La nika hît nêkenê, wina ziwa tadanê û kenê sey qamçî.
Verê cû reqîban qamçî eştêne linganê yewbînan û hedefê înan o bi ke reqîbê xo bifînê. Labelê nika nê qaydeyî bineyke vurîyayê. Kaykerdoxî eşkenê bi destan zî mudaxeleyê yewbînan bikerê.
Qaydeyanê kayî ra çîyo tewr muhîm no yo, gama ke qamçî weşananê yewbînan ganî serê polan ra cor nêdê piro. Eke yew reqîb gina erd ro yan zî qamçîya yewî dest ra bikewo, kay qedîno. Ge-ge her di reqîbî tam nêeşkenê zorê yewbînan biberê, kay derg beno, yan zî kaykerdoxî eciz benê, a game hekem keweno dewre û kay qedîneno.
Kay de xelate çin a, coka yewin yan diyin bîyayîş zî çin o. Kam ke gina erd ro, kay ca verdano şino. Na rey di kaykerdoxê bînî destê înan ra qamçîyan dewr gênê û vejînê meydan. Mentiqê kay, şeklê tetbîqatî de hîna zaf sey ceribnayîşê hêzê camêrdîye yo.
Badê ke îdareyê Gêlî mîyan ra wedarîyeno û nufusê mintiqa zî zêdîyeno, êdî na şayî dewanê bînan ra zî vila bena. Labelê çîyo muhîm aşma gulane de, tewr verî Dêrey de şayî bena, dima her hewte tayê dewanê bînan de, ma vajin ke Şêxmalan de, Pîrxakîyan de û Beybûnî de bena.
Kayê Qamçî dewanê bînan de, bitaybetî zî hetê Tirkanîye de dewam keno la Dêrey de nê serranê peyênan de êdî terk bîyo. Cemalî derheqê terkkerdişê kayê Qamçî de va, ma ewnîyayî ke tayê xortê nikayênî mezîyet û edetê musabeqe ra tam fehm nêkenê, danê pêro, demeyê kayî de qelbê yewbînan şiknenê, coka ma no kay terk kerd. Labelê dewanê bînan de kayê "Qamçî" sey edetêkê baw û kalan hema zî dewam keno. Wina aseno ke no kay do tim dewam bikero.



**Şêx Seîd gama ke yeno Pîran, şewêk Dêrey de maneno. Vanê, Şêx Seîd şîyo bano ke mezelê Pîr Mensurî tede yo de nimaj kerdo, dima uca rakewto ke belkî Pîr Mensur bêro hewnê ey û derheqê hereketî de yew rayîr bimojno. La Pîr Mensur nêameyo hewnê Şêx Seîdî. Coka vanê hema o wext ra Şêx Seîd derheqê herbê kurdan û tirkan de bêhêvî bîyo.**





# Beşîkçî: Divê karsazên kurd jî xêrê ji îhaleyên Kurdistanê bibînin

**Nivîskar û civaknasê navdar ê Tirkiyê di hevpeyvînê de bal kişand ser îhaleyên ku li Herêma Kurdistanê şirketên biyanî werdigirin û got: ''Divê ji niha û şûnde sermayedar û karsazên Kurd jî sûdê ji vê xêr û bereketê werbigirin û hikûmeta Kurdistanê îhaleyan bide wan.'' Derbarê rewşa dawî ya Bakur û Rojavayê Kurdistanê de û herwiha peywendiyên navbera Herêma Kurdistanê û Tirkiyê de bersiva çend pirsên me da.**

FIRAT KELEHKÎ

**Dema zanîngeheke Kurdistanê doktoraya fexrî da cenabê we, we hest bi çi kir?**
Ya girîng mirov ilm û zanist biparêze û îdeolojiya fermî rexne bike, ji ber îdeolojiya fermî astenga herî mezin e li pêşiya zanist, loma divê berdewam îdeolojiya fermî were rexnekirin û di vê çarçoveyê de mirov pirsa kurd û Kurdistanê fam bike. Niha tişta ku herî zêde îdeolojiya fermî li ser radiwestiya pirs kurd û Kurdistanê bû, heta salên 1990'î îdeolojiya fermî li ser sê xalan radiwestiya, astengkirina nerîna çeprew, meseleyên olî û pirsa kurdî. Salên 1990'ê dema li Yekîtiya Sovyet sosyalîzm bi paşde gav avêt êdî nerîna çep nema wek tehdît hat dîtin, nerînên rast û olî jî wiha. Lê li gor 10-15 salên borî niha hikûmeta AKP'ê hinek gav avêtine û pirsa kurdî êdî hewqasî wek dehdît nayê dîtin, lê ji aliyê dewletê ve Kurdistan her wek tehdît tê dîtin, loma ya girîng mirov li ser van mijaran raweste. Meseleya doktoraya fexrî jî bêguman dilsoziya kurdan pêşan dide û cihê kêfxweşiyê te.

**We qala AKP'ê kir, gelo hikûmeta AKP'ê di vê mijarê de cidî ye?**
Hinek tişt hatine guhertin lê di mesela azadiya ramanê de gelek astengî hene, herwiha sansûr li ser medyayê heye, wek mînak dema li ser bûyerekê medya bixwaze raya giştî agahdar bike ji aliyê hikûmetê ve astengî tên derxistin û rê liber rojnamevanan tê girtin, her dem dixwaze nûçeyên di berjewendiya wê de bên weşandin, evna jî bêguman karekî negatîf e û divê rê li azadiyan neyê girtin. Lê dîsan jî hinek tişt hatine guhertin.

**Niha di warê ekonomîk de peywendiyên navbera Herêma Kurdistanê û Tirkiyê heta astekî baş bi pêş de çûne, li Herêma Kurdistanê jî carna qala serxwebûnê tê kirin, gelo ev peywendiyên han dê bikaribin helwêsta Tirkiyê biguherînin da ku piştgiriya vê daxwaza kurdan bike?**
Heta 10-15 sal berî niha hikûmetê, wate hikûmeta Tirk derbarê kurd û Kurdistanê de gelek astengî derdixistin, herwiha derheqê Herhema Kurdistanê de jî astengî derdixistin, lê di van salên dawî de dewlemendiya Kurdistanê ya di warê çavkaniyên xwezayî û petrolê de ket rojevê, wek tê zanîn evna ji bo pîşesaziyê girîng e, bo pîşesaziya Tirkiyê jî, vêca dema ev



enerjiya han pêdiviyên pîşesaziyê dabîn bike, girîngiya çavkaniyên xwezayî yên Herêma Kurdistanê jî zêdetir dibe. Di vê çarçoveyê de peywendiyên bazirganî pêş dikevin, di van 5-6 salên dawî de têkiliyên ticarî gelekî pêşketin, pêşketina van têkiliyên bazirganî tesîrê li peywendiyên polîtîk û dîplomatîk jî dike, wate ew jî pêş dikevin. Mesele nerîna derbarê Kurdistanê yan Herêma Kurdistanê de jî li gor çar pênc salên borî nermtir bûye. Bi kurtî peywendiyên dîplomatîk ên siyasî û polîtîk jî pêşdixin.

**Li gor we ev peywendiyên ekonomîk an siyasî yên di navbera Herêma Kurdistanê û Tirkiyê de, dê bandoreke çawa li kurdên parçeyên din an doza Kurdî li wan parçeyan bike?**
Bêguman dê tesîra wan peywendiyan hebe, wek mînak niha Herêma Kurdistanê di warê rê û bînasazî û gelek warên din de îhaleyan dide, îhaleyên xwe jî zêdetir dide tirkan, lê bi baweriya min eger ji niha û şûnde van îhaleyan bide karsazên kurd jî baştir dibe, vêca karsazên Bakur, Rojava yan Rojhilatê Kurdistanê be ferq nake yanî wan îhaleyan bide karsaz û sermayedarên kurd jî û evna pir girîng e.

**Me berê nedidan wan?**
Ez nabêjim nedane karsazên kurd, lê kêm bûye, bi baweriya min îhaleyên mezin zêdetir dane firma û karsazên tirk, ji derdora MHP'ê jî gelek karsazan îhale wergirtine, lê ji niha û şûnde eger karsazên Bakur, Rojhilat û Rojavayê Kurdistanê jî xêrê ji van îhaleyan bibînin baş dibe.

**Di vê dema dawî de parlamenterên BDP'ê çûn nav HDP'ê û hinek derdor jî vêna negatîf dibînin û dibêjin çima kurd diçin nav çepên Tirkan, hun vê mijarê çawa dibînin, gelo BDP ber bi Tirkiyeyîbûnê diçe?**
Bi baweriya min Tirkiyeyîbûn ne mefhûmeke baş e, dê wek Tirkbûn were famkirin û ne mefhûmeke baş e, divê mirov ji Kurdistanîbûnê qut nebe, berevajiya wê Kurdistanîbûn girîng e, ya girîng kurd werin ba hev, aliyên kurd peywendiyên xwe xurt bikin evna girîng e, kurd ne bi çepê tirkan re lê di nav xwe de li hev kom bibin û ber bi organîzasyonekê ve biçin baştir e. Herwiha Tirkiyeyîbûn qutbûna ji Kurdistanê ye. Dema mirov berê xwe dide salên 1970'î kurdan qala rêxistinên cuda dikirin, PKK jî evna digot. Niha jî PKK qala rêxistina ligel çepê Tirkan dike, ez vêna rast nabînin.

**Niha li Rojavayê Kurdistanê sê kanton hatine pêkanîna û behsa Rêveberiya Xweseriya Demokratîk tê kirin, di demekê de ku rejîm hê li wan kantonan heye, hun vê mijarê çawa dinirxînin?**
Eger navçeyek ji aliyê rejîmê ve were kontrolkirin an li wê navçeyê hebe ne rast e mirov qala rêveberiyeke xweser bike. Wek mînak li Rojvayê Kurdistanê hun karmendek in û eger meaşê we dewleta Sûriyê yan rejîma Esed bide, ne mimkûn e mirov li vir qala xweseriyê bike. Federasyon girîng e, federasyon ji bo wê yekê girîng e ku tu bi xwe aboriya xwe biafirînî, dahata xwe peyda bikî û tu bi xwe wek pêwist belav bikî, loma federasyon girîng e ku liser xebat bên kirin û herwiha pêdagirî li ser federasyonê were kirin. Lê eger heta niha jî meaşê we ji aliyê dewletê yan desthilata Beşar Esed ve bê dayîn li vê derê xweserî çênabe. Wek mînak eger em bibêjin tu mamosteyekî amadeyî yî û meaşê te dewlet dide, dema tu bikevî sinif dikarî ji zarokan re bibêjî îro dersa me li ser Ehmedê Xanî ye û emê li ser vê mijarê rawestin, ji bo tu vêna bikî divê desthilata te bi xwe hebe, divê dahata te hebe, tu wê dahatê biafirîne û tu bi xwe xerciya xwe bikî. Desthilata ekonomîk û siyasî girîng e lê dema meaşê te dewlet bide ev tiştekî din e. Li Başûrê Kurdistanê jî wiha ye, mesele

Malikî dibêje ez ji sedî 17 budceyê nadim, wê demê divê tu bi xwe biafirînî, tê bi xwe aboriya xwe peyda bikî û xerciya xwe jî li wê gorê bikî ku pêdiviya te bi Malikî nebe.

**Meseleya ku li Rojavayê Kurdistanê sê kanton hatine damezrandin hun çawa dinirxînin, çima ne yek herêma Kurdistanê be?**
Di dawiya salên 1960'î de Serokkomarê wê demê Nûredîn El-Attasî kurd ji Rojavayê Kurdistanê sirgûnî başûrê Sûriyê kirin û Ereb anîn cihên wan, armanc têkdana demografya Kurdistanê bû, li Îraqê jî heman proses birêve çû, kurd ji Kerkûk û navçeyên din derxistin û Ereb anîn cihê wan. Mebest kêmkirina kurdan bû. Lê piştî midaxeleya Amerîkayê di 2003'an de êdî rewş guherî, Ereb bi tazmînatê bo cihên wan ên berê hatin şandin û kurd jî vegeriyan cihê xwe. Lê li Sûriyê heta niha derfeteke wiha çênebûye, ji bo Kurdistanê parastina federasyonê girîng e, herwiha dema mirov federasyonê jî biparêze divê kemera kurdî hemû di yek çarçoveyê de be, hewldan bên dayîn ji bo vegera wan kurdên ku bo başûrê Sûriyê hatine sûrgunkirin, herwiha ji bo wêya ku Erebên li kemera kurdî jî hatine bicîhkirin vegerin cihên xwe xebat bên kirin, evna mijareke girîng e. Wate divê mirov bi awayekî Kurdistanî bifikire û xwedî li Kurdistanîbûnê derkeve. Pêwist e kurd li ser wê yekê rawestin çima nifûsa wan zêdeyî 40 milyon kes e lê statuyeke wan nîne, çima li navçeyên wan serjimêrî nayê kirin, li Tirkiyê, Îraqê, Îranê û Sûriyê jî wiha ye, naxwazin serjimêrî were kirin ji ber ji zêdebûna nifhusa kurdan ditirsin. Wek mînak di serdema Sedam Husên de çima li Kerkûkê serjimêrî nehat kirin? Sedem tirsa ji nifûsa kurdan e loma naxwazin were kirin. Yanî eger were kirin bi fermî rastiya nifûsa kurdan derdike holê û ew dewlet jî naxwazin rewatiyê bidinê.

**Ji bo parastina Kurdistanê çi pêşniyazên we hene?**
Ya herî girîng kurdî û Kurdistan were parastin û li ser vê bingehê siyaseta wê birêve here, li ser wê yekê raweste çima li hember tirk, fars û ereban xwedan nifûseke hewqasî zêde ye û statûyeke kurdan nîne, li ser vê mijarê bê rawestandin baş dibe, dema li ser vê mijarê jî tu rawestî, dibe Kurdistanî, xwedî li wan mafan derdikeve ku jê hatine wergirtin, hewldan di vê derbarê de bin baş e, Kurdistanîbûn girîng e û bi baweriya min divê siyaseteke wiha bê meşandin da ku bikaribe biserbikeve.


Wêne: Muhamed Dargalay

# Mafparêzên cîhanî ji Tirkiyêyê gumanbar in

GABAR ÇÎYAN

Sê organîzasyonên navdar: Rêkxirawa Efûkirinê ya Navnetewî (Amnesty International), Mala Azadiyê li Emerîka (Freedom House) û Sazûmana Raçavkirina Mafê Mirovan (Human Rights Watch) çend roj berê li ser rewşa Tirkiyê raporên xwe belav kirin. Saziyên navborî bala raya giştî kişandin ser gef û xeterên li pêşiya siyasetvan, rojnamevan û çapemeniyê. Rexne û xemgîniyên wan li ser sê (3) xalan bûn:
a- Gefên li hemberî 'Azadiya Xweîfadekirinê'.
b- Helwêst û xeterên li dijî 'Azadiya Çapemeniyê'.
c- Bi rêya guhertinên hiquqî, 'bihêzkirina desthilatdariya hêza îstîxbarat û ewlekariyê'.
'Amnesty-AI' di bin servinîsa 'Li Tirkiyê azadiya çapemenî û xweîfadekirinê di bin tehdîtê ye', balê dişîne ser dijwariyên li pêşiya rojnamevanan. Ji ber xebatên xwe çawa dikevin ber pêla girtin û cezekirinê. 'AI' dibêje, di 'deftera şêwr û agehdariyê' ya 'Teşkîlata Ewropayê ji bo Hevkarî û Ewlekariyê-OSCE' eşkere diyar e ku, 'xebatên rojnamevaniyê giring e. Bi saya wêneyên medyayê mirov dikare helwêstên çalakvan û hêzên dewletê bibîne û hesap bibirse. Lewma hêsankirina xebata wan giring e û divê polîs bibe alîkarê wan ku karîbin bûyera raçav bikin.'
Lê buyerên Geziyê û yên din nîşan didin ku, helwesta dewletê li dijî xebatên rojnamevaniyê ye. 'Azadiya xweîfadekirinê' mafek bingehîn ji yê mafê mirovan e û bi peymanên navnetewî hatiye parastin. 'Azadiya çapameniyê' jî rê ji xweîfadekirinê re vedike. Divê Tirkiyê zextên xwe bi dawî bihêne û qanûnên li ser pirsê bide guhertin. Mala Azadiyê li Emerîka -Freedom House di rapora xwe ya 2013 an li ser 'Azadiya Çapemeniyê' diyar dike ku, Tirkiyê di nav welatên Ewropayê de 'ji awira azadiya çapemeniyê ve welatê herî li paş ketiye. Li gorî pîvana 'Freedom House', Tirkiyê berî niha di nav 'welatên nîv demokrat' de dihate hejmartin. Lê li gorî analîz û pîvanên nû, Tirkiyê ji 'welatên ku ji azadiyê mehrûm' in tê hesêp. Ji xelkên Ewropayê ji % 66 li 'welatên ku çapemeniya wan azad e' dijîn. % 22 'welatên nîv bi nîv azad in' dijîn. Ji % 12 jî dikevin 'welatên ku ji azadiya çapameniyê mehrûm in'.
Tirkiyê di nav 197 welatan de, di dora 134 an de ye. Li Ewropayê 'welatê ku çapemeniya wê ne azad e', tenê Tirkiyê ye. Rêvebirên 'Freedom House' paşketina li Tirkiyê wek krîzek cidî dihesibîne. Tê gotin ku, pêşketinên neyênî li Tirkiyê ji aliyê Emerîkayê ve bi awayekî cidî tê raçavkirin. Raçavkirina Human Rights Watch bi giranî balê dişîne ser guhertina qanûna 6532 an. Qanûn, 'xizmetên îstîxbaratê' ji nû ve formule dike. Li gorî qanûna nû, kelemên li pêşiya operasyon û karên 'Teşkîlata Netewî ya Îstixbaratê-MIT' ê bi giştî ji holê radibin û îcazeyek bêsînor tê pêşkêşkirin. Kesên ku xeletiyên teşkîlatê eşkere bike têne cezekirin. Rojnamavanên ku sirrên sergirtî yê teşkîlatê belav bike têne cezekirin û xebatkarên teşkîlatê li hemberî tevayê qanûnan têne parastin. Her wisa mecala 'guhdarîkirin û raçavkirina xelkê' û 'berhevkirina agehdariyên jiyana taybetî' hêsantir dibe.



Bi guhertina qanûnê, mafê hemwelatiyan li hemberî neheqiyên dewletê tê binpêkirin. Sirrên jiyana taybetî ku bi peymanên navnetewî hatine parastin nayê nasîn. Azadiya çapemeniyê tê sînorkirin. Qanûn di 17 nîsana 2014 an ji aliyê meclîsê hatibû pejirandin. Piştî erêkirina serokomar, di 26 nîsanê de ketibû jiyanê.
Rêveberên Tirkiyê, guhertina qanûnê bi 'qonaxa aştiyê û hevdîtinên bi PKK' ê ve girê dide. Li gorî Tirkiyê, bi guhertina qanûnê dê hêzên ewlekariyê karîbin bi hêsanî qonaxê bi rêve bibin. Lê rêkxiravên însanî dîtina dewletê şaş dibînin û bi hişkî li dijî derdikevin.
Tirkiyê, ji bo parastina mafê mirovan û azadiya çapemeniyê li welêt, gelek peyman îmze kirine. Ji awira mafê mirovan û hiqûqa navnetewî ve girêdayî ye û nikare bêalî û bêberpirsiyarî tevbigere. Piştî hersê raporan, eşkere ye ku, pirsa 'azadiya çapmenî û xweîfadekirinê' û guhartina qanûna nû li Tirkiyê dê bêhtir were rojeva organîzasyonên mafê mirovan. Hêz û rêkxirawên navnetewî dê qala pirsê bikin û zextên li ser dewleta Tirkiyê zêdetir bibin. Giring e ku desthilatdarên tirk 'qonaxa aştiyê' bi ciddiyet binirxînin. Dîtinên PKK, hêzên siyasî û civakî li ber çava bê girtin. Reformên pêwîst bênkirin.
Pêwîst e hêzên dewletê di çarçoveya qanûnên bingehîn û peymanên mafê mirovan xebata bikin. Xelk, li hemberî şaşîtî û hişkiya hêzên dewletê bêne parastin.
Li hemberî şaşîtî û karên neînsanî dawe bêne vekirin, lêpirsîn û lêkolîn bibin.
Bêne dadgehkirin û cezekirin.
Divê PKK û rêkxirawên netewî jibîr nekin ku, guhertina hiqûqî, ji fêdê bêhtir dê bandorên neyênî bi xwe re bîne. Civatê kor û ker bike. Lewma helwêstek cidî li dijî qanûnê pêwîst e.

# Ji koçberên Rojava re cîhê razanê jî nîne

BÊZAR BÊWAR

Şer û pêvçûnên ku li Sûriye zêdetirî 3 salane diajo, berdewam e ku bibe sedema koçberiyê, exsilî û penaberiya bi her avayî ve. Bi sed hezaran kes bi vê hincetê duçarî şert û mercên dûr mirovî dibin. Gelek malbatên ku ji Rojava berê xwe dane Bakur, neçar dimînin ku xwe bigihînin bajarên mezin ên wek Stenbol, İzmir û hwd. Koçberên ku xwe digihînin van bajaran ne tenê bi birçîbûn û pirsgirêkên tenduristî ve, heya ku bigihêje nebûna cî yê razanê ê ji bo wan ve jî rû bir û ne. Wek vê malbata ku va ye wêneyê wan.

Yek ji bajarên ku koçberên Sûryeyî û Rojavayî herî zêde xwe dispêrinê Stenbol e. Ku meriv li kîjan kuçe, park û avahiyên xirbe dinêre, jin, zarok û kesên ku ji ber şer reviyanê xwe spartinê. Ji yên ku li Sûriye û Rojava hatine bi temamî di mercên xirab de ne û birrek ji wan parsekiyê dikin. Hinek di karên rojanê yên wek hemaliyê de dixebitin, hinek di atolyeyên tekstîlê de, hinek jî di karên înşaatê de. Lê birekî mezin ji wan li kolanan, li park û kuçeyan dimîne. Ji ber ku li Stenbolê êdî park jî tijî bûne, hinek ji wan ji bo razanê jî li cihekî rehet diğerin. Lê ya herî xamdar ev e ku jin û keçên ku li devera şer reviyanê bi talûkeya fûhûşê ve rû bi rû ne.

Koçberên ku bi taybetî li Rojava hewldidin ku xwe bigihînin Tirkiye, bi beramberî pereyekî giran bi riya şebekeyan di sînor re derbas dibin û tên Dîlok, Antakya û Riha'yê. Lê ev bêş tenê filitîna wan a ji şer e. Piştî derbasbûna sînor vê carê şerê jiyîn û jiyanê dest pê dike. Li kolanên bajarên rojavayê Tirkiye lêhî ye ji zarokên çîp rût û pêxwes, jinên parsek di hembêzê de zarok, kal û pîrên ku bi zorê dimeşin û parsekiyê dikin.



Ji koçberên ku ji Rojava reviyane û xwe spartine Stenbolê malbatek ku ji 7 kesan pêk tê, li vir kuçe bi kuçe li cîhekî digerin. Tenê ji bo razanê...

Li gor agahiyên fermî hejmara kesên ku ji Sûriye derbasî Tirkiye bûne ji 700 hezarî bihorî ye. Li Stenbolê jî hejmara koçber û penaberên ku li Sûriye hatine zêdetirî 100 hezarî ye. Bi tevahî zêdetirî du milyon 500 hezar kes li ber şerê Sûriye reviyaye û xwe gihandiye welatên cûda. Li Tirkiye jî gelek wargeh û kamp ji bo wan hatine avakirin lê ji ber ku cî nemaye êdî şerzede bi sere xwe ji çareyên xwe digerin. Beriya çend rojan li Dolapdere ya Beyoğlu ya Stenbolê malbatek Rojavayî ku ji 7 kesan pêk tê li kêleka rê, bêhna xwe vedikirin. Ji ber ku bi rojan meşiyane û êdî tenê ji cihekî razanê diğerin. 3 zarokên pêxwas, dayikeke 65 salî, bûk û du kurên wê.

**Tenê cî yekî razanê divê...**

Wahide Ehmed û malbata wê beraya 20 rojan li Efrînê dev ji mal û heyînên xwe berdane û duçarî koçberiyê bûne. Bêyî xanî û milkê ku li dû xwe hiştine, pereyên di deste xwe de jî hemû dane şebekeyekê û tevî gelek malbatên din xwe gihandine Dîlokê. Li gor gotinên Wahidê Ehmed, dora deh rojan li kuçe û parken Dîlokê mane û piştre jî berê xwe dane Stenbolê. Ehmed, hatina Stenbolê wiha bi me re par ve kir, "Şer e. Me her tiştê xwe mala xwe hişt li cî û em reviyan. Çi di destê me de hebû me da şebekeyekê. Li Dîlokê cî ye ku me bikaribûya debar bikira nebû. Me xwe bi avayekî gihand Stenbolê. Em hatin çend rojan li Parka Gezî ye man. Pişt re çalakiyek çêbû û polis hatin park dorpêç kirin û em jê derxistin. Ji ber ku qerebelixbû me bi bavê zarokan ve hev û din wenda kir. Niha em nizanin ku li ku ye û em dê çawa bigêjin hev. Niha me dev ji xanî û her tiştî berda ye em li cîhekî ku lê razên digerin. Çend roj in ku me nikarî em razên. Heke parkek vala ku kes dest me nede hebe emê herin lê razên. Zarok va ye tazî, pêxwas û birçî ne. Em nizanin ku çi bikin."

Li kêleka cadde ya ku wesayit wek hêhiyê diherikin rûniştibû malbata Rojavayî. Me xwest ku em bi bûka Ehmedî re jî biaxivin lê wê tenê bi şermokî, bi têkçûyî û bê hêvî man sere xwe dabû dîwarê pişt xwe û nexwest ku dengek jî jê derkeve. Kurê Ehmedî yê 35 salî Yusiv jî got, "Gotin ne hewce ye ji vê rewşa xuyayî re. Çi gotin têrî bike û çi gotin kêm neye..."

Yûsivê ku bavê 3 zarokane û li aliyekî ji xuyaye nikare li ser piya raweste li aliyê din ji ber ku zarok xwe diavêjin ber erebeyan serê pêçê yekî şemaq dike da ku dernekevin ser rê. Birayê wî Kerîm jî hema bi birîna linge xwe ku xwîn jê diçû û bê pêlav re mijîl bû. Bi nêrîneke watedar daxwaza axaftinê şûnde vegerand. Ji malbata ku tevî bixçe, çente û tiştê xwe yê di tûran de li kêleka rê rûniştibûn piştî bêhna xwe vekirin barê xwe li mil û sere xwe bar kirin û berê xwe dan hevrasê alî da ku parkeke vala bibînin ku lê razên...





**Fûhûş û firotina jinan...**

Li gor gelek nûçe û agahiyên ku ji deverên cûda tên xuyaye ku koçberên li ber şer reviyayî bi fûhûşê re rû bir û ne. Li gor îddiayekê li Bağcilar a Stenbolê maleke fûhûşê hatiye vekirin û liv ir jin bi darê zorê dûçarî fûhûşê dibin. İddiaya ku bi tu avayî me nikarî piştrast bikin xwediyê lêkolîneke kûr e lê rapora ku ji alî Mazlûm Derê ve hat amadekirin jî balê dikêşe ser vê yekê.

Di rapora ku piştî xebata li 12 bajar û bi 72 koçberên jin re rû bi rû hatiye kirin hate amadekirin de Mazlum Der balê dikêşe ser pirsgirêkên jinên ku li ber şer reviyane yên taybet û cinsî. Li gor xebatê, jinên koçber bi darê zorê duçarî fûhûşê dibin, wek hewî tên zewicandin û li bajarên Tirkiye û Kurdistanê ew bi bihayê 20-50 lîrayî duçarî fûhûşê dibin û heya keçên 12-13 salî jî bi vê rastiyê re rû bi rû dimînin.

Dîsa li gor rapora ku di 5 mehan de hate amadekirin de, jinên koçber bi riya mahra olî wek hewî têne zewicandin û ev kiryar jî bi pereyan dibe. Mixabin ev pêkhatin ziviriye qadek bazirganiyê. Li gor raporê kesên ku vî karî dikin ji bo her jin û keçe 250-500 lîra distînin û malbatên jinan jî bi bihayê du hezar-5 hezar lira keç û jinan dizewicînin.

Di rapora ku tiştên girîng û tirsnak ên di derbarê mijarê de li ber çava radixe de rewşa zaroka jî wek bêşek din cî digire. Zarok jî dîsa bi riya şebekeyan dûçarî parsekî û dizî yê dibin.

# Şêwir damarek wêjeya kurdî ye



AZÎZ TEKÎN

Şêwira Xwandina Edebiyata Kurdî ku çar sale civînên wêjeya kurdî dike, û xwendinên xwe yê wêjeyê didomîne. Endamên Şêwira Xwendinê ji du hefte carek kom dibin û li ser berhemek kurdî nêrîn û ramanên xwe di çarçoveya wêjeyî de bi hev re perve dikin. Piştî nivisandina romana yekem a kurdî Şivanê Kurmanca vir ve di wêjeya kurdî de gelek guherîn çêbûne. Meriv vê guherînê herî baş di hejmara pirtûkên hatî çapkirin de dikare bibîne. Li gor îstatîstîkên di malpera Diyarnameyê de hatî weşandin; di sala 1010'an de 115 heb, 1011'an de 144 heb, 1012'an 185 heb 1013'an de 224 heb pirtûkên bi kurdî hatine çapkirin. Her diçe hejmara wêşanxaneyên kurdî zêde dibe. Li ber kovarên heyî kovarên nû jî dest bi weşanê dikin. Her sal bi hezaran xwendekar di saziyên kurdî de qursên zimên dibînin. Li Bakûrê Kurdistanê di çend zanîngehên dewletê de beşên kurdî hatin vekirin û ji van beşan gelek xwendekar mezûn bûn. Van pêkhatinên ber bi çav bandorek erînî li berhemdayîna kurdî kir.
Piştî Şêwira Xwandina Edebiyata Kurdî ya Stenbolê; li Amedê Klûba Xwendinê ya Diyarbekirê, li Qosera Mêrdînê Koma Xwendinê ya Qoserê li Sêrtê Koma Xwendina Botanê hat avakirin. Herî dawî xwendekarên beşa kurdî ya zanîngeha Çewlîgê bi navê Klûba Xwendinê ya Çewlîgê komek ava kirin. Bê van komên şêwira xwendinê gelek komên din li deverên Kurdistanê civînên bi vî rengî dikin. Ji van koman ya Amedê dest bi wêşana kovara Wêje û Rexne kir û hejmara xwe ya dûyemîn weşand û koma Mêrdînê jî dest bi wêşana kovarek bi nave Zarema kir. Di heman demê de çend nivîskarên kurd ji van koman derketin.
Her çiqas rêjeya berhemên wêjeyî di kurdî de ber bi zêdebûnê de biçe jî berhemên rexneyî yên derbarê wêjeyê de kêm in. Ev dibe sedem ku xwendevanê kurdî nikaribin berhemên teorîk, raxne, lêkolînan bi zimanê xwe bixwîne. Bi vê pêdiviyê çar sal berê li Stenbolê xwendevanên kurdî bi armanca nirxandina berhemên wêjeyî bi navê Şêwira Xwendina Edebiyata Kurdî komek ava kirin. Endamê Şêwira Xwendinê Hesen Ildiz diyar kir ku heta niha wek Şêwira Xwendinê nêzikî 60 pirtûkên wêjeya kurdî xwendine, piraniya van roman û çîrok e. Ildiz wiha got, "Bi saya Şêwira Xwendina kurdî di jiyana me de cihekî gelek ber bi çav guhêrî. Piraniya başdarvanên me ji pîşeyên cihê cihê ne. Hin ji wan xwendekar in, hinek ji wan mamoste ne, hin bijîşk, hin rojnamevan in, hinek jî bêkar in."
Endamê Şêwira Xwendinê Leyla Turhan derbarê girîngiya Şêwirê de hestê xwe wiha bi lêv kir: "Şêwir, ji bo meraqdarên wêjeya kurdî platformeke hevpar e bi ya min. Xwendekar ji bo heman pirtûkê nerînên cur bi cur dikare bibîne, her wiha dikare bi wan nerînan sentezeke nû li gorî xwe çêbike." Turhan derbarê bandora Şêwira Xwendinê ya li rexnegiriya kurdî dike û wiha dirêjî da axaftina xwe: "Em îro dibînin ku rexnegir tenê di eksenê rexneyê de, bi berfirehî kovaran derdixin. Ev gavek baş e lê gavek derengmayî ye. Bi ya min rexnegirî hê jî xwe ji sekna ji aliyê temamî baş an temamî xirap xelas nekirî ye. Di berhemekê de erenî û neyeniyên berhemê zû bi zû nayên cem hev lê di şewirê de ji ber ku dîtin pir in, berhem esehî bi gelek awayan tê nirxandin, yanê bandoreke wê ya avaker heye. Bi saya Şêwira Xwendinê min kêmasiyê xwe ferq kir û ez tê gihêştim ku ez çawa nêzî berhemekê bibim."
Endamê Şêwira Xwendinê Ferhad Girêşêran bal dikşîne ser xwendinên komî û dibê ku bi vê rêyê xwendinên kurdî ber bi çav dibe. Girêşêran wiha got: "Ez destpêkirina şêwirê weke xwesteka xwendevanan ya gihêştina yên weke xwe dibînim. Erê her xwendevanî di mala xwe de dixwend lê ev xwendinana li cihê xwe diman. Loma xwendevanan hewl dan ku ev xwendin li cihê xwe nemînin, bigihên hinên din. Bi vê yekê jî xwendina kurdî û xwendevanê kurdî jî bêhtir hat berçavan. Ev yeka mirovên ji hêla hizrî de nêzî hev, ji hêla fizîkî jî nêzî hev dike. Piştî vê jî bi bandora hin guhertinên siyasî û çandî jî li gelek cihên cur be cur şêwirên nû li hev civiyan. Hilbet ev yek jî dibe cihê kêfxweşiyê bo me." Girêşêran balê dikşîne ser pêşketina rexnegiriya kurdî û dibê, "Di destpêkê de kurdbûna berhemek besbû lê dû re xwendevan di berhemê de dest bi gerîna tiştên din jî kir. Çawa ku hejmara berheman zêde dibe hejmara nivîsên rexneyî û rexnevanan jî zêde dibe û ewê hê jî zêde bibe. Şêwir jî di vir de ji bo xwendina berhemekê dikare hin perspektîfan dêyne ber xwendevanan. Bi ya min ev yek jî ewê qalîteya xwendinê jî û pê re qalîteya berheman jî zêdetir bike."
Endamê Şêwira Xwendinê Çetoyê Zêdo jî di der barê armanca Şêwirê de fikrên xwe wiha bi lêv kir, "Armanca me ev bû ku xwendevanên wêjeya Kurdî li hev bicivînin. Bi beşdarbûna xwîner re, berhema tê nirxandin pêrgî gelek çavderiyên resen tê. Mirov dikare bi hêsanî bibêje her xwendevan bi tevlêbûna xwe, deriyeke xwendinê vedike û bi komê re par ve dike. Bi ya min xwendinên bi forma şêwirê, bi çend gavan nêztir î rexneya wêjeyî ye. Ji ber ku platformeke vekirî û bi tevlêbûna xwendevanên xwe nirxandinê hêsantir dike. Her ku xwendin û xwendevan zêde dibe; rexne û wêje li gora vê zêdebûnê para xwe hildigire."
Civînên Şêwira Xwendinê yên ku du hefteyan carekê li dar dikeve bi hilbijartina berhemek kurdî didome û li ser berhemê dîtinên xwe dibêjin wê bidome.



# Kevnebirînên li giyanan hatî nexşandin

AZAD XANZADE

Di rûpela pêşî ya 'Nexşên Li Giyan' de gotina Xelacê Mansûr "Cehenem ew der e ku em lê ne û tu kesek bi êş û şewata me nabîse." heye. Bi rastî jî ku kes tunebe meriv xemê xwe, azara xwe jê re bibêje ew derdek e, ku li derdora meriv kesên ji meriv bi dertir tijebe ew jî derdek li ser derda ye. Ku em li encama şerên li Kurdistanê binêrin li pişt xwe bi hezaran wendayî hiştiye ku hê jî kes nizane ew li ku ne. Sêyîneya dawî ya Dilawer Zeraq 'Nexşên Li Giyan' li ser van wendayiyan e. Zeraq di sêyîneya yekem de behsa kesê ku hevserê xwe wenda kirine dike, di sêyîneya duyem de jî li ser kesên hezkiriyên xwe wenda kirine disekine. Di sêyîneya dawî ya 'Nexşên Li Giyan' de jî dorê tîne ser dayîkên ku zarokê xwe wenda kirine. Di romanê de kombûna dayîkên zarokê xwe wenda kirine, dişibe li hev civîna "Dayîkên Şemiyê." Kul û derdên wan yê wendabûna hestiyê zarokên wan bi xewnên ku merivên derasayî ji wan re dibêje tê dîtin û dilê wan tê rehetkirin. Roman ji 12 beşan ku ji ser navê wan diyar dibe ku di naveroka wan de çi heye, pêk tê. Di serî de behsa hin zarokan tê kirin ku di dawiya "yarî" yên xwe de an birîndar dibin an jî tên ber mirinê. Di navbera wan beşan de pêywendî bi peyvên hevbar tê bi dest xistin ku ev meriv qanih dike, tehmek romanê dide meriv. Ew beşina bi tena serê xwe wek çîrok jî dikare bê xwandin, ev jî paşxana nivîskar ya çîroknûsiyê derdixe holê ku ev jî di romanê de bi xwe re gelek kêmasiyîn bingehîn tîne. Yek ji wan ew e ku afirandina qarakterên xwedî kesayet di romanê de kême. Dîmenek ji lîstokên zaroktiya lehengan tên dayîn û bi qûtbûyînek ku hay me jê nabe di wî navberê de çi dibe me derbasê dîmena şerwaniya van lehengan, dema mirina wan dike. Ji ber vê qûtbûnê û kêm behskirina lehengan em zêde nikarin bikevin nav giyanê lehengan, em nikarin bi wan re bibin yek. Ji ber ku teybetiyên ber bi çav yên van lehengan nayê gotin an jî bi xwandevan nayê hîskirin di hişê mirov de namîne.




Leheng ji nebûna teybetiyên wan yên kesane nikarin ji "kesbûnê" xilasbin xwe bigihînin "qarakterbûnê." Di romanê de bo çêkirina qarakteran helbet hewcetî ne tenê bi kêm dîtina teybetiyên qarekteran he ye lê ku meriv wek mînak bide şervanê bi devoka Colemêrgê diaxive qarakterê herî di bîr de dimîne ye.

Di romanê de lezkirinek ber bi çav xuya dibe. Lehengên ku hê zarok in bi lîstokên ku di dawiya wê de birîndarî he ye dileyzin û derbasî xortaniya ku piştî wê tune ye dibin. Menîca ku ji bo derketina derve bi zorê ji dayîka xwe destûr digre, piştê xeydandina ji hevalê xwe ber bi çemê ava baharê ku har bûye de dimeşe û dişiqite nav avê. Hevala wî Seyran wî xilas dike. Menîceya ku dibe Arya. Piştî kemînekî li Çiyayê Feraşînê bo derbasbûna ji çemê Hêzîlê ku bi ava berfa biharê hêz û qewet girtiye dimeşin. Dema ava Rewşenê bi xwe re dibe bi çûn hatinên xwe yê zaroktiyê, Arya dikeve rola Seyrana ku wê di zaroktiyê de xilas kiriye. Di beşa "Yarî" û "Hevalyariyê" de rastî çend lehengên zarok tênê. Bedo û Şîro di xirbeyek de rastê kûçikê xwe Qero tênê û hewl didin ku lingê wî yê ku pelixiye baş bikin. Di berdewama çîrokê de Bedoyê berber ku dikana xwe bigire, Şîro jê daxwaz dike ku rûyê wî kur bike lê Bedo naxwaze. Di vê beşê de panaromayek biçûk ji Farqînê tê dayîn. Wan salên ku welatî di nav kolanê de dihatin kuştin. Şîro jî ji wan kesên ku di nava rojê de merivan dikuje ye. Ku Bedo ber bi mala xwe diçe Şîro jî dide dû û bi derengî vekirina deriyê malê Şîro wî dikuje. Di berdewama vê çîroka de Xeloyê ku pi qerpîtê dikir kor bûya bi "kevnebirîna" xwe, "digîje zaroyê me." û dibe Xelat. Di kemîneke de hevalên xwe winda dike û ew jî birîndar dibe. Xwe di şikeftekê de vedişêre.

Di hemû beşa de tişta herî girîng ew e ku nirxdayînek li axê heye. Ji xwe di bîra hevpar ya gelên rojhilatî de ax wek dayîk tê dîtin. Di paşxana bîra kurdan de jî ev tişt ber bi çav e. Ax dayîke li ber xwe dide. Hinek dişibe jinan jî, ax tu çendî bidiyê bi heman rêjeyê li te vedigerîne, xwedîtî li te dike. Tu çiqas jê hezbikî ew qas te hembêz dike. Piştî ku Xelat di şikefta ku xwe tê de veşartiye de tê girtin, wî bi balafirê bi hewa dixin û berdidin ser axê, berdidin nava axa dayîkê. Di beşa din de jî ku av gerîlayê jin di nava xwe de dibe, fam dike ku "keçik ne para wê ye; jê paktir û zelaltir e; û para axê ye, loma wê ji nava xwe dike der" û "berê xwe dide axa ku gazî wê dike." Agirê di giyanan de jî pêketî ne bi avê bi werdana axê ancax tê temirandin.

Di nameyên dawiya pirtûkê de rexneyên li pergela mêraniyê ber bi çav dibin. Tişta balkêş ew e ku sedemên tevlêbûna "zaroyên me" wek "rûxandina pergela hezar salan" tê dîtin û armanca wan wekê "simbêlê kur kirinê." tê dayîn. Hemû referansên ku tên dayîn de derdikeve tekoşîna rûxandina serdestiya pergela mêrantiyê. Meriv vê yekê dikare bi siyaseta rojane ya civaka kurde ve girê bide. Serencama zarokan ji dayîkan re bi rê ya xewnan tê gotin. Dayîkên wan bi avayekî digêjin hev û li malekê kom dibin û behsa xewnên xwe dikin. Di xewnê van dayîkan de em hay li dawiya "zarokan" dibin. Van xewnan de qodên mîtolojîk tên pêçandin. Şervana jin ku sê cara ji hêla darvanek ve li deştê tê bin axkirin, bi avayekî der asayî cardin derdikeve ji cihê hatî bin axkirin. Di dawiyê de cihê ku dixwaze lê be, li qûnrata çiyayekî digihîje aramiya ku dixwaze.

Weke encam; nivîskar çîrokên ku bi bûyerên neyînî, birîndarî û kuştinî dawî dike, di nameyên dawî de dilê xwandewanan xweş dike ku lehengên berdêl dane dil rehetîn. Her çendî jiyanek wan a bi lez hebe jî gihiştine aramiyê û xwendevano tu jî xem neke!



# Nazirî: Ez şeydayê ferhenga kurdî me

Hefteya borî li bajarê Kirmanşanê Rojhilatê Kurdistanê hunermendê kurd Şehram Nazirî di konserekê de çend stranên kurdî gotin û evna jî bû sedema nerazîbûna neteweperestên Îranê û bi awayekî tund êrîşî Nazirî kirin.

Hefteya borî li bajarê Kirmanşan ê Rojhilatê Kurdistanê hunermendê navdar ê kurd Şehram Nazirî di konserekê de straneke kurdî pêşkêş kir ku têde tê gotin: ''Min minalî kurd farisî neyzanim, bi zimanê kurdî qezat wegiyanim - Ez zarokê kurdim farisî nizanim, bi zimanê kurdî derdê te ji min re bê". Ji ber vê stranê jî hejmarek malper û ajansên Îranê êrîşî wî hunermendê kurd kirin ku qaşo bi gotina vê stranê hestê neteweyî yê xelkê xistiye tevgerê û qala cûdabûnê kiriye.

Piştî vê konserê gelek malper û neteweperestên Îranê bi tundî êrîşî Nazirî kirin û ew bi wê yekê tohmetbar kirin ku qaşo dixwaze nasyonalîzma kurdî dijî farisan teşwîq bike û herwiha gotina wê stranê jî wek dijayetîkirina farisan anîn ziman.

Piştî çend rojan Şehram Nazirî bêdengiya xwe şikand û got: ''Evna helbesteke kurdî ya qedîm e, naveroka wê bi tevahî evîndarî ye, lê hinek kes her dixwazin pirsgirêkan derxînin û dixwazin di nav ava pîs de masiyan bigirin, di vê helbestê de hîç tiştek wek ku ew qal dikin, nîne."

Nazirî wiha dibêje: ''Ev helbestên wiha ji qedîm ve hene, di helbestê de şaîr dibêje ku ez kurd im bi farisî nizanim, lê bi zimanê kurdî qurbana te dibim ku Fars e, eger baş berê xwe bidinê li dijî cudahî û neteweperestiyê ye, lê wan kesan bi mebest mijar mezin kirine."

Nazirî tekez kir ku yên wî dinasin dizanin ku hunera wî ji bo hemû xelkê ye û wiha pêde çû: ''Di dewra nû ya karê xwe de du sal dibe berdewam vê helbestê dixwînim, kes nikare van tawanan bixe stoyê min, herdem min xwestiye ruh û hestê hunerî pêş bixim û ji bo hemû kesî be, lê ji ber hemû çavkaniya jiyana min ferhenga kurdî bûye, xwezayî ye ku xwendina awazan bi zimanê kurdî li ba min girîngtir e û xwezayî ye ku şeydayê ferhenga kurdî bim."


Şehram Nazirî

Şehram Nazirî, hunermendekî navdar ê kurd e, 63 salî ye û li bajarê Kirmanşan ê Rojhilatê Kurdistanê ji dayîk bûye, heta niha 40 albûm belav kirine, çend xelat wergirtine. Xelata Baştirîn Muzîka Îrfanî ya Cîhanê di sala 1997 de û Xelata Swarçakî ya Edeb û Hunerê ku hikûmeta Fransayê di sala 2007'ê de pêşkêşî kir, ligel Xelata Baştirîn Hunermendê Asyayê ku Sekreterê Giştî yê Neteweyên Yekbûyî Ban Ki-moon dayê.

**BasNûçe**

# Li Licê çi diqewime?





Wêne: Sertaç Kayar

Li navçeya Amedê Licê zêdetirî du hefteyane ku bi hinceta protestokirina qereqol û kelehqolan xwpêşandan têne li darxistin, pêvçûn derdikevin û riya Çewlik û Amedê demeke di bin kontrola çalakvanan de ye. Di çalakiyan de gelek kes hatin destgirkirin û bi dehan kes jî birîndar in.
Beriya du hefteyan li hember avakirina qereqol û kelehqolên ku li gundên dora Licê têne avakirin komek ciwan bi çalakiyan ev yek protesto kirin û înşaata çend avahiyên kelehqolan xilandin. Piştî vê tîmên taybet sevqî herêmê hatin kirin û dû re çalakî jî firehtir bûn. Di çalakiyan de riya Çewlik û Amedê ket bin kontrola çalakvanan û li gelek cihan kort li rê hatin xistin, pir hatin xirakirin û bi kepçeyan li gelek deran rê hat xirakirin. Çalakiyên ku leşkeran bi bombeyên gazê midaxaleyê kir bi piştgiriya gelê derdorê gihêşt asteke din. Piştî ku leşkerên herêmê têrî ku çalakiyan rawestîne nekir, li gelek bajaran tîmên taybet çûn herêmê. Gelek kes ji navçe û bajarên derdorê ji bo piştgiriya çalakiyan berê xwe da Licê û çalakî bi pêvçûn aloziyek mezin didomin.
Bêyî vê dîsa ji bo piştgiriyê li Kanîreş a Çewlikê jî çalakiyekê dest pê kir û rêya Çewlik û Mûşê jî ket bin kontrola çalakvanan. Li gor agahiyên ku hatine bi dest xistin, rojnamegerek jî di nav de û yek ji wan giran, nêzî 20 welatî birîndar bûn û bi dehan kes jî hatin destgirkirin. Di çalakiyên ku didomin de herî dawî hate îddiakirin ku leşkeran bi çekan êrîşî gel kiriye û dû re gel jî wek mertalên zindî li qada pêvçûnê rêz bûye. Di çalakîyê de hin leşker jî birîndar bûn. Tevî ku rê hê jî di bin kontrola çalakvanan de ye di navbera Licê û Amedê li 7 cihan cihê kontrola leşkeriyê hatiye danîn.
Her wekî din li Wan, Êlih, Mêrdîn, Şirnex, Riha, Agirî, Colemêrg û gelek navçeyên Kurdistanê jî ji bo piştgiriyê çalakî tên li darxistin. Wekî din dîsa li hember avakirina qereqolan li Çiyayê Meskanê yê li Colemêrgê jî bi pêvçûn çalakiyek hate dest pêkirin û li wir jî protesto ya rûniştinê didome. **BasNûçe**

# Li Şirnexê hilweşîna kana madenê



Piştê ku di 13 Gulanê de li Somaya Manîsayê di kana madenê de qezayek çêbû û 301 karkerê madenê jiyana xwe ji dest dan, di 3'yê Hezîranê de jî li gundê Avka Masya ya Şirnexê madenê de hilweşînek çêbû û di dawiya hilweşînê de karkerê bi navê İbrahim Sağnak mir e. Di madena bi hejmara 1 ya qûntara ciyayê Cûdî de ku girêdayê şirketa Acar Madenciliğê ye sala par di meha Gulanê de jî hilweşînek pêk hatibû û di vê hilweşînê de karkerek bi navê Gürgün Özen jiyana xwe ji dest dabû. Li hember van kontirolnekirina, maden dîsa hat vekirin û di 3'yê Hezîranê de hilweşînek pêk hat û İbrahim Sağnakê 30 salî di bin hilweşînê de ma. Piştê hilweşînê her çiqas bo xilaskirina Sağnak xebat hatibe destpêkirin jî ew nehat xilaskirin. Piştê qezaya di madena pêk hat waliyê Şirnexê Hasan İpek daxwiyaniyek da û got ku:" Li hember girtina tedbîrên me maden bê destûra hatî vekirin û bi qaçaxî tê xebitandin."
Li gor îstatîstîkên "qezayên kar" li Tirkiya yê her roj 3 karker di encama qezayên kar dimire. Tirkiya peymana bo pêşî lê giritina qezayên kar û başkirina rewşa karkeran ya bi navê İLO îmza nekiriye. Li gor odeyên pîşeya û saziyên sîvîl qontirolkirina madenan li Tirkiyê ne di asteke baş de ye. **BasNûçe**

# Jana sirgûnê Kurdistana Sor

**WELAT BAZ**


Ji Laçînê dîmenek

Ber bi salên dawiya 1980'an li cîhanê dengeyên siyasî guherîbûn. Li Yekitiya Sovyetê Mîhaîl Gorbaçov ku alîgirê siyasetek nûh bû di sala 1985'an de hatibû ser hukum.

Gorbaçov ji bo pirsgirêkên mezin yên Yekitiya Sovyetê çareser bike, siyaseta ji nûh ve avabûnê destpêkir. Lê jinûhvebûn û zelalî şikestina Sovyetê leztirkiribû. Di sala 1988'an de Yekitiya Sovyetê êdî ber bi belavbûnê ve diçû. Sîstema sosyalîst li dij sîstema kapîtalîst nikaribû hebûna xwe bidomandana.

Di nav gelên Sovyetê de welatparêzî û cudaxwazî destpêkiribû. Aborî û jiyana civakî û siyasî xetimî bû. Pirsgirêkên netewî û demokrasiyê di tecrûbeya 70 salên borî de nehatibûn çareserkirin. Li aliyê din, di serî de Amerîka û pergala rojava dora sîstema sosyalîst pêçabû û şerê sar bûbû sedemê pirsgirêkên mezin.

Serokê Sovyetê Gorbaçov di bin bandora netewperestên Rûs de, biryara belavkirina vê împaratoriya cîhanî da. Li gor siyaseta nûh ya Moskovayê, wê dewletên ku yekitiya Sovyetê pêkanîbûn êdî ne wek barê Rûsya lê wek koloniyên Rûsya bihatana birêvebirin.

Gel û welatên heta wê demê di bin sîstema Sovyetê de gihîştibûn hevûdû yeko yeko ji Sovyetê vediqetiyan. Edî li ser xaka Sovyetê dema dewletên netewî û nakokiyên etnîkî destpêkiribû.

Bi vî awayî barê Moskovayê siviktir dibû û çavkaniyên xwe ji bo Rusya vediqetand. Di encam de forma vê dewletê guherî û Yekitiya Sovyetê navê xwe wek Koma Dewletên Serbixwe guherî.

Pêvajoya nûh ji bo kurdan xwedî wateyeke hasas bû. An wê di bin vê aloziya giran de wendabûna an jî wê ji rewşê îstîfade bikrana. Firsend û xeter herdû jî di heman demê de di kemînê de bûn.

Piştî ku ji îskeletê Sovyetê dengên qirçînê hat, pevçûnên peşîn di nav azerî û ermeniyan de derket. Nagorno Qerebax ku rûniştvanên wê ji ermeniyan pêk dihat û wek heremeke otonom di nav xaka Azarbaycanê de dima, bû sedemê şerekî ku hîn jî car caran didome.

Herema Laçînê ku wek nawenda Kurdistana Qafqasya bû di nav xaka Azarbaycanê de dima û di navbera Ermenistan û Qerebaxê de wek pirekî bû. Piştî destpêka nakokiya navbera herdû komaran, ermeniyên Azarbaycanê û azeriyên Ermenistanê ji malên xwe hatin qewirandin. Di nav azeriyên Ermenistanê de 20 hezar kurdên Musluman jî ji Ermenistanê hatin sirgûnkirin. Koçberên nûh, li Kazaxistan, Rûsya û Azarbaycanê belavbûbûn.

Dîsa di sala 1990an de li Kirxizistanê gundên kurdan bû hedefa êrişên hêzên fermî û bi sedan malbat ji cîhwarên xwe hatin qewirandin û derbasî Kazaxistanê bûn. Heman rewş li Ozbekistanê jî rûdabû û bi hezaran kurd, ji ber zextan reviyabûn Rûsya û Kazaxistanê. Li aliyê din di heman wextî de li bajarê Rûsya Qirasnadarê jî gelek kurd ji xaniyên xwe hatibûn avêtin û bêcîh mabûn. Li ser xaka Sovyetê cîh ji kurdan re tengbûbû.

**Xeyala Kurdistaneke Sor!**

Li ser vê rûdanê, serokên kurdên Sovyetê xetera li ber xwe dîtin û ketin tevgerê. Wê Sovyet belavbibûya û kurd wê ji cîhên ku hatibûn sirgûnkirin jî bihatana qewirandin û bêwar bimana. Bi vî awayî pevajoya damezrandina rêxistineke netewî û lêgerîna welatekî ji bo kurdan destpêkiribû. kurdên Sovyetê careke din berê xwe dabûn Kurdistana Sor.

Ji bo parastina mafên kurdan di bin serokatiya Mihemed Silo Babayev de komîteyekî hatibû damezrandin. Komîta kurd ji bo doz û parastina mafên kurdan bi navê Yekbûn rêxistinekî jî wê avabikra. Babayev ji bo damezrandina Kurdistana Sor, behsa şerê çekdarî dikir. Alternatîfên kurdan jî li ser xaka Rûsya an jî li peravên Derya Xazarê otonomiyeke netewî bû.

Di encam de endamên Komîtê ji bo alikariya Rûsyayê bidestbixin, berê xwe dan peytext Moskowayê.

Di komîta kurdan de kesên wek Mihemedê Silo Babayev, Elî Evdirehman Xatûna Seyîd, Zahirê Evdî, Nadirê Kerem, Şêx Remezan, Prof. Kînyas Mîrzoyev, Wekîl Mistefa, Huseynê Nebo, Îşxanê Aslan û Rustem Broyî hebûn. Serekên kurd daxwaza dîtina Serok Gorbaçov dikirin.

Di 7'ê Gulana 1989'an de 1000 serek û rewşenbîrên kurd li Moskowayê gihîştin hevûdû. Kurdên ku ji 8 dewletên wek Rûsya, Kazaxistan, Ermenistan, Azarbaycan, Gurcistan, Turkistan, Ozbekistan û Kirxizistanê li Moskovayê gihîştibûn hev, li meydanên peytextê çalakiyên xwepîşandan û rûniştinê pêk dianîn û doza mafên otonomiyê dikirin.

Di rojên pêşîn de rayedarên Sovyetê, li kurdên ku li Moskowayê bêhuzûriyê derdixistin zextan kirin.

Karmendên Qesra Sor daxwaza kurdan ya hevdîtinê reddikirin. Li ser vê yekê qasî 2 hezar kurd li Meydana Pûşkin dest bi çalakiya rûniştinê kirin. Di serê evil de, polîsê Rûs bi awayekî hovana êrişê kurdan kir. Lê kurd ji cîhê xwe veneqetiyan.

Di encama çalakiyên bibiryar de roja heştan, heyetekî Sovyetê di bin serokatiya Gavrîl Papov de, bi kurdan re rûnişt. Di heyeta Rûs de Serokê Komîteya Kêmnetewan Ariyembov jî hebû. kurdan ji rayedarên Sovyetê 3 tiştan duxwest: Divê Rexistina Yekbûn wek berdevkê kurdên Sowyetê bihata naskirin. Otonomiya Kurdistana Sor ya ku di dema Stalîn de hatibû xesbkirin carek din bihata qebulkirin. U zilma Ermenistanê ya ser kurdên Musluman bihata sekinandin. Rayedarên Sovyetê ji bo çareseriya pirsgirêka kurdan sozê damezrandina komîsyonekî dibû. Lê li gor wan niha behsa Kurdistana Sor wê şerê navbera Azerî û Ermeniyan hîn jî sortir bikra. Bi vî awayî hêvîya kurdan careke din geş bûbû.

Di 21ê Îlona heman salî de kurd careke din ji bo kongra yekem ya Yekbûnê li Moskowayê gihîştin hevûdû. Di civînên peşîn de ji Sovyetê pejirandina Yekbûnê hat ricakirin. Di vê navberê de Moskowa di nav de pirsgirêka kurd jî biryara çareserkirina pirsgirêkên netewî dabûbû berxwe.

**Xeyalên sor din nav xwîna sor de**

Li aliyê din di navbera kurdan de li ser forma çareseriyê nîqaş didomiya. Gelek ji kurdan li dijî projeya Kurdistana Sor derdiketin. Şerê xedar yê heremê çavê wan ditirsand. Ji ber vê yekê kurd li



Map 28a. "Red Kurdistan" and Administrative Divisions of South-Central Caucasus.
Map 28b. "Red Kurdistan" or the Kurdish Autonomous Province of Azerbaijan SSR: 1923- 1929.

hember Moskowayê ne yekdeng bûn. Rayedarên Sovyetê ji kurdan biryareke zelal û yekdeng duxwestin. Li aliyê din Komarên Ermenistan û Azarbaycanê li dijî daxwazên wejandina Kurdistana Sor disekinîn.
Di sala 1990'an de hêviyên kurdan mezintir bûbû. Rayedarên Sovyetê gelek caran bi heyetên kurdan re rûniştibûn û ji bo çareseriyê hêvî dabûn wan. Lê Sovyet li ber têkçûnê bû. Keştiya sosyalîzmê hêdî hêdî nokdibû. kurdan ji herkesî zedetir neduxwest ku Sovyet ji hevûdû belav bibe.
Di hevdîtina gulana 1991'an de cîgirê Serokê Yekitiya Sovyetê Revenko ji heyeta kurd re silavên Gorbaçev got û mizgîna damezrandina Kurdistana Sor da. Li gor Revenko, rayedarên Moskowayê bi Dewleta Azerbaycanê re axifine û ew qayil kirine. Divêyabû serekên kurd jî gelê xwe ji bo vegera ser xaka Kurdistana Sor amade bikra. Li gor biryara civînê wê heyeta Yekbûnê biçûya Azarbaycanê û bi rayedarên Azerî re jî li ser pirsgirêkan biaxifiya. Kurdistana Sor êdî ne xeyal bû.

### Laçîn: Bereya şerê ermenî û azeriyan

Di vê navberê de, dema ku kurdan xwe ji bo Kurdistana Sor amade dikirin, li Laçîn û Qerebaxê di navebera Azerî û Ermeniyan de pevçûnên xwînî geşbûbû. Artêşa Ermenî xaka Kurdistana Sor yanê Laçîn û Qerebaxê dagir kiribû.
Li Azarbaycanê jî di navbera rejima Ayaz Mûtalîbovê hevkarê Moskowayê û Cepha Gel ya nîjadperest ku ji alî rejima Tirk ve dihat destekkirin de pevçûn û pozberî didomiya.
Sovyetê duxwest Laçîna ku di navbera Ermenîstan û Azarbaycanê de wek heremeke tampone, kurdan bicîhbike û aliyan lihevûdû aşt bike. Lê piştî ku li Bakûyê nîjadperest Ebulfeyz Elçîbey hat ser hukum, ev pîlana wan têk çû. Lewra rejima Bakûyê êdî guh nedida Moskowayê.
Hêvîyên rayedarên Yekbûnê piştî ku Moskowayê li heremê bandora xwe wendakir û Azarbaycan ket destê nîjadperestan û Kurdistana Sor jî ji alî ermeniyan ve hat dagirkirin, şikest.
Di vê navberê de di şerê herdû dewletên cîran de, pevçûnên giran li herema Laçînê ku kurd lê dijîyan didomiya. Azeriyan kurdên Musluman û ermeniyan jî kurdên êzdî bi zorê dişandin cepheya şer û li dijî hevûdû didan şikestin.
Li aliyê din jî piştî ku ermenî ketin Laçînê bi sedan kurdên Musluman qetilkirin. Laçîn çend meh piştî şer xalî bûbû.
Dagirkirina xaka Azarbaycanê, li hember cîhanê Artêşa Ermenî wek dagirker dabû nasandin. Lê Laçîn ji Ermeniyan re lazim bû. Lewra Laçîn yekta korîdora ku Ermenistan û Qerebaxê digihand hevûdû bû. Lê Laçîn xaka Azarbaycanê bû û di serî de Tirkiye, Amerîka û dewletên heremê li Ermeniyan zexta vekişînê dikirin.
Ermenistan ji bo Laçînê di destê xwe de bihêlin, formula Kurdistana Sor anîn bîra xwe. Ji bo vê yekê bi rayedarên Yekbûnê yên radîkal re ketin têkiliyê. Li gor pêşniyaza ermeniyan ew amadebûn ku li Laçînê piştgiriya damazrandina Kurdistana Sor bikin.
Şewirmendê Ter Petrosyanê Serokê Ermenistanê, Mirza Hagopyan ji Profesör Şeref Eşirî re wiha gotibû:
“Em Laçîn û derdorê ji azeriyan paqij dikin. Li ser vê xakê mafê kurdan yê dîrokî heye. Hûn werin li vêderê dewleta xwe îlan bikin. Bila dinya nebêje; Ermeniyan erdê azeriyan dagir kiriye. Dewleteke kurd li Laçînê me acis nake. Emê çek bidin we. Dewleta xwe hûn buxwe biparêzin. Hemû kurdên Asya Navîn li Laçînê kombikin.”
Di nav de Babavey û Wekîl Mistefa jî hin serokên vê rêxistinê jî duxwestin ji rewşê îstîfade bikin û li heremê dewleteke kurd damezrînin.
Lê rewşenbîr û serokên kurd di derbarê hevkarên siyasî de lihev nedikirin. Babayev û gelekên din, bê alîkarî û garantiya Sovyetê xwe nedidan ber vî karî û bi Ermeniyan bawer nedikirin.
Li gor dijberên vê projeyê ermeniyan duxwest kurdan li dijî azeriyan bikar bînin. Li aliyê din hin kesên din jî ji ber sedemên şexsî li dij projeya Babayev dixebitin û ji Moskowê re giliyan dikirin. Bi vî awayî hêza Yekbûnê perçe bûbû û Yekbûniyan hevûdû bi sîxurtiya dewletên cûbecûr sûcdar dikirin.
Di nav serekên Yekbûnê de Generalê kevn yê Arteşa Sor Wekîl Mistefa ji bo vî karî amadebû. Wekîl Mistefa her bi çi awayî be, duxwest kurd li Laçînê xwedî derkevin û Kurdistana Sor di bin hîmaya kî de be, bê damezrandin. Bi vî awayî wê hebûna Kurdistana Sor û mafê kurdan ya li ser vê xakê bihata erêkirin.
Li aliyê din, Moskowayê jî li dijî nîjadperestên azerî û rejima piştgirê Tirkiyê, bi awayekî eşkere piştgiriya vê pîlanê dikir. Lewra rejima Bakûyê ji Moskowayê re dijmintî dikir. Bi vî awayî Wekîl Mistefa li Erîwanê bi rayedarên Ermenî û kurdên Ermenistanê re ji bo damezrandina Kurdistana Sor ket bazar û hewldanê.



Li Kelbecerê Newroz


Serokkomarê Kurdistana Sor Wekîl

### Dewleta kurd ya serbixwe û bê kurd!

Di vê navberê de ji sedemê şer li Laçînê kurd nemabûn. kurdên Musluman yên heremê an ji aliyê ermeniyan ve hatibûn qetilkirin an jî reviyabûn Azarbaycanê. Ermeniyan kuştina kurdan jî dixist stûyê azeriyan. Laçîna peytexta Kurdistana Sor bê kurd mabû.
Di 9'ê Hazîrana 1992'an de ji Erîwanê çend otobus kurd, tevî hin rojnamevan û rayedarên Ermenî hatin Laçînê. Deklarasyona Serxwebûna Kurdistana Qafqasya di 10ê Hazîranê de li hember çapemeniya cîhanê ji alî Wekîl Mistefa ve hat îlankirin. Damezrandina dewleta kurd ya mînyator bi dîlan û govendê hatibû pîrozkirin. Herçend ev yek tiştekî remzî jî bû, kurdan vê yekê wek mizgîniya pêşerojê dinirxandin.
Piştî îlana Kurdistana Sor, kesen ku bi otobosan ji Erîvanê hatibûn zivirîn malên xwe. Qasî 20 xortên çekdar wek leşkerên sembolîk wê çend rojên din jî li wir man. Li Kurdistana bê kurd, dewleta kurd hatibû damezrandin. Li ser avahiyeke vala jî ala Kurdistanê hatibû daleqandin.
Li gor daxuyaniya ku roja Kurdistana Sor hat îlankirin, Wekîl Mistefa wek serok, Prof. Şeref Eşîrî wek cîgirê Serok, Karlanê Çaçanê Wezîrê Çandê û Emerîkê Serdar jî wek Wezîrê Ragehandinê hatibûn tayînkirin.
Lê hesab û rastî li hev nehatin. Ne kurdên koçber û sirgûn zivirîn ser xaka Kurdistana Sor, ne jî Ermeniyan alîkariya kurdan kirin. Li aliyê din Moskoviyayê li Ermeniyan zexta vekişîna ji Laçînê dikir û ji kurdan jî duxwestin ku ev dev ji projeya dewleta serbixwe berdin. Li Azarbaycanê piştî demekî, careke din alîgirên Rûsyayê hatibûn ser hukum.
Li gor yek ji şahidên demê û Wezîrê Ragehandinê Emerîkê Serdar, wan zanibû ku ne Ermenî wê alîkariya kurdan bikin û ne jî wê kurd ji Asya Navîn werin li Kurdistana Sor bicîh bibin. Wan xwestibû xêzekî li dîrokê bikolin û ji bo vê yekê jî li Laçînê dewletek îlan kirin. Emerîkê Serdar dibêje; “Ji ber van sedeman me film û fotografên wê rojê kişand. Wê ev doz bidawî nebe. Rojekî ger careke din ev mesele were rojevê, wê kurd ev dokûmet û belgeyên destê xwe pêşberî dîrokê bikin.”



# Divê huner li pêş gel be

**Siya Şevê piştî derxistina albûmên 'Zeng', 'Pûç' û 'Bêyom' niha amadehiya albûmek nû dike. Li kêleka albûma nû hersê albûmen ku hatibûn belavkirin ji cardin dê werin belavkirin. Ji ber ku endamên komê li derên cihê cihê ne û di hin karan de dixebitin pirî cara hatina wan a cem hev dijwar e. Li hember van astengiyan bê alîkariya piyasa mûzîkê xebatên xwe dimeşînin. Li ser mûzîk û xebatên Siya Şevê me bi solîstê komê Gökçe Selim re hevpeyvînek kir.**





AZÎZ TEKÎN

**Endamê koma we li cihên cihê cihê ne û bê mûzîkê karê din jî dikin. Dema amadekirina albûman de hûn di pêvajoyek çawa re derbas dibin?**
Astengî pir in. Ku em albûmek derdixin salek me digre, mehek qeyda gîtarê, mehek din bas gîtar... Hêla aborî de jî astengî pir in. Em zêde nikarin werin cem hev, heval dişixulin. Ku yek vala dibe yê din dişixule, ku ew vala dibe ez dişixulim. Niha ez heme, Cahît heye, Umut, Mahmut û carina Serhat bi me re dibe.

**Hûn mûzîka kurdî di çi rewşê de dibînin û hûn mûzîka xwe li ku derê didin rûniştandin?**
Di rewşeke ne baş de ye. Qadên akademîk tune yan jî pir kêm in. Repertûarek hatî komkirin tune. Dilşad Seîd dixwast li Başûr akademiyek, qonservatûarek veke, projeyek wî hebû niha nizanim di çi hawî de ye. Muzîka kurdî niha ku em televîzyonên kurdî vedikin em dibînin ku di çi rewşê de ye. Koka muzîka kurdî pir dewlemend e, hêla dengbêjî, hêla wêjeya devkî de pir zexm û bi qewet e. Muzîka kurdî mîna darek koka wê pir mezinbe, pir qalindbe lê li şaxê vê darê de pel tune, yan jî pir zirave. Îro ew pelên zirav em in, yanê niha muzîka ku tê çêkirin e!

**Ku meriv li dema dawî ya mûzîka kurdî dinêre meriv dibîne ku ji kîsê xwe dixwe û zêde afirînerî tune. Mûzîka kurdî dê ji vê tengasiyê çawa xilas bibe?**
Di xwezaya hûnerê de pêşengtî heye. Gerek hûner li pêş gel be lê ê me hûner di paş gel de tê. Weke boçik li dû gel dikevin. Gere hûner ji siyasetê jî û ji her tiştî jî pêşdetir be. Li her derê bi vî şiklî bûye lê niha di civaka me de pir li paş e. Li pey tiştê hêsan ketine. Carina dibên hema bila tiştek bibe em li ser wê sitranekê çêbikin; 'çiya, zinar, şoreş' nizanim çi çi... lê tu li bingehê dinêrî tu tiştek jî tune. Hunera kurdî di her deverê de cih digire lê dibê ramana wê bi her awayê serbixwe be û xurt bingehek wê hebe , ev di xwezeya wê de heye. Hewce nake ku tu di nava tiştekî de bî, dibe ku tu li kêleka wê bi jî. Xebatên çandî û hûnerî bi her awayî dikarin pêşengtiyê bikin. Dikare ji vana re rê veke, pêşenktî bike, wan dehf bide. Her kes kişiya ye qalikê xwe. Muzîk ji mûzê tê. Armanca mûzê ev e ku tiştê îro ji sibê re beşêre. Tu ji doh bi awayekî xurt hatî hetanî îro lê îro qiyamet diqete tu radibî tiştê wisa hêsan û beredayî, bê kurahî dibêjî. Tu nikarî bi vê bê kurahiyê tiştan biguhezî sibê. Ev kar bi navendek çandê nabe divê saziyên mezin bên avakirin. Van tiştên ku ji doh hatine tu nikarî derbasî sibê bikî, li hemberî te çol heye. Divê çandek bê avakirin. Wêjeya devkî hetanî îro hatiye, tu li dêvla ku dakevî koka wan lêkolîna bikî, lê hetanî ji destê te tê tu xerc dikî. Bo van tiştan em bikaribin veguhezin sibê, divê awayek baş bê arşîvkirin û atmosferek hûnerî were peydakirin ku hûnerjî derkeve holê.

**Ku em ji Koma Wetan bigrin hetanî niha hûn dikarin ji bo rocka kurdî çawa dibînin?**
Kerem Gerdenzerî, Koma Wetan destpêkek xurt e. Dû re tiştên bê bingeh, tiştê arabesk, tiştê popîler derket. Belkî niha bi gotinên xwe, bi mûzîka xwe xweş diaxive li hûnera kurdî de cih nagrin. Vana tiştên hêsan in, bingeha wî tune. Tiştê ku bingeha wê tunebe sibê ya wê jî nabe. Tiştê ku îro dibe tiştê bi bingeh nîne. Niha çend mûzîsyenên baş hene, lê ev kar bi çend kesan nabe, divê bi sazî û akademiya pêk. Niha em herin Kadikoy yan jî Taxsîmê em dikarin dused komên rock bibînin. Di mûzîka kurdî de em nikarin sê koman bijmêrin û bînin cem hev. Sahne nikarin bibînin.

**Ku meriv li sitranên we dinêre li cem hostetiya mûzîkê tehmek wêjeyî jî he ye, hûn têkiliya di navbera wêje û mûzîkê de çawa dibînin?**
Ez dikarim bibêjim wêje, mûzîk û hûner bingeha jiyanê ye. Bê wêje, bê hûner, bê nêrîn mûzîk çênabe. Divê bingehek hebe. Divê wêje û mûzîk bi hev re bin, meriv wan ji hev cihê nikare bibîne. Em gotinan bi hev re dinivisînin, tenê yek nanivisîne. Nivisandina gotina karekî qolektîf e. Tiştê em di jiyana xwe de dibînin, tiştê kuem di nav de ne dinivisînin e.

**Ku meriv bi piyasa mûzîkê re nexebite, xebatên xwe li mala xwe çê bike çiqas dikere xwe bi cih bike di nav behra mûzîkê de? Û çima hûn xebatên xwe bi tena serê xwe dikin?**
Di serî de em çûn sitûdyokî şixulîn. Me xwest em rock mûzîk çêkin, elektro gîtar, bas gîtar... Wê demê aranjorê me got ezê 'bilûr bi kar bînim, li vir daholê lêxim'. Me got em rock çêdikin bi gotinê we nabe û nebû jî. Hûner gerek ji hundirê mirov were. Ya meyê bi xwe derxista yan jî meyê bigota temam nabe em dev jê berdin. Me qeyd li mala xwe çêkir. Tu dikarî çenteyê xwe, telefona xwe emanetê yekî bikî lê hûnera xwe tu nikarî bidî yekî. Ji vê bigre bi hestê xwe, bi nêrînên xwe belavela bike. Belkî balkêşiya mûzîka me, gotinên me ji vir tê. Strana me ya 'Sitê' heye donzdeh qite bû. Min ji aranjor re got ezê vê bixwînim, got ezê stranê kin bikim, qebul nakim. Lê bi xwe tiştek nizanî bû. Ev stran ev e.  Minakekê bêjim, rojekê xizmetkarê Balzac diçe deriyê wî vedike, dinêre Balzac digrî. Divê ezbenî xêre tu çima digrî. Dibê lehengê romana min mir. Divê romanê hûn dinivisînin lehengê xwe nekujin. Dibê ku lehengê min nemire ev roman nabe roman. Em diçin sitûdyoyê aranajor dibê gere leheng nemire, na babo ev divê bimire. Me ev yek qebûl nekir û me ew kuşt di mûzîka xwe de.

**Ku meriv li ser navê we û albûmê difikire hizrek bedbînî xwiya dibe. Hûn dixwazin 'Bêyom'iya 'Zeng'ê û 'Pûç'bûnê ji holê rakin?**
Di wî warî de Albert Camus dibêje ger dinya xweş û ronî bûya hûner peyda nadibû. Bedbînî di rastiya me de heye. Di hêla hûnerî de, di hêla zimên de qedexikirin heye, li çar perçe şer heye. Di vî halî de em nikarin bibêjin her tişt xweş e. Ez niha li Stenbolê dijîm lê bi her awayê bandorê li me dike. Em nikarin xwe bixapînin an jî yê ku li me guhdar dike bixapînin. Bedbînî di jiyana me de heye. Divê em vê yekê bidin nîşandan belkî ji holê rabe. Ku tiştek nayê dîtin tu nikarî jê xilas bibî. Çi hebe em wê dibêjin. Dibe ku nêrîna me, şîroveyên me ne xurtbe lê em çi dibînin ev dibe gotin di stranên me de.

**Di pêşerojê de hunê çi xebatan bikin?**
Niha em albûmek nû çêdikin, albûma çaremîn. Em wê jî li malê çêdikin. Em van hersê albûmê berê jî di sitûdûyeke baş carek din çêdikin, mîksa wê, mastira wê ji nû ve çêdikin . Emê hersê albûmên berê û albûma nû bi hev re derxin.

